Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal de

Hejmar: 108
4'ê Nîsana 2009
Buha: 150 Tûmen

agiri

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Obama Dê Bi Rêberê DTP'ê Re Bicive

Qirar e roja 6'ê Nîsana 2009'an, Barak Obama, Serok Komarê Amerîkayê serdana Turkiyê bike. Biryar e Obama bi cuda bi rêberên DTP'ê re bicive.

# ŞEHÎD RÛMET Û SERBİLİNDİYA GEL Û WELAT IN

Serbarê vê yekê ku meha Xakelêve, hevya yekem a biharê û destpêka sala nû û cejna Newrozê ye û di vê heyvê de, Kurd cejn û şahiyan lidar dixin, lê ji bo Kurdên Rojhilatê Kurdistanê tamek bi kul û jan jî heye. Ew jî daliqandina Pêşewa Qazî Mihemed, Serokê yekemîn Komara Kurdistanê û hevalên wî di sala 1947'an di Qada Çarçira a Mehabadê de ye.

PDKÎ bi hest bi berpirsiyariya neteweyî û dîrokî, roja lidarvekirina Pêşewa Qazî Mihemed weke Roja Şehîdên Kurdistanê ragihand, lewre xelkê welatparêz yê Kurdistanê hemû salê, rojê 10 a meha yekem a biharê, nemir Pêşewa Qazî û hemû Şehîdên rêya azadî û rizgariya Kurdistanê bibîr tînin û emegdariya xwe li hember canê paqij ê wan nîşan didin.

Bi hilkevta Roja Şehîdên Kurdistanê, digel vê hejmara Agirî, 4 rûpelên taybt weke paşko hatiye amadekirin.



## Konferansek Giring Li Ser Mafê Mirovan, Demokrasî Û Federalîzm Di Îranê De, Li Parlemana Ewropayê

Ji bo dema du rojan (1-2'ê Nîsana 2009'an) rêberên sereke ên dijberên rejîma Îranê li Parlemana Yekîtiya Ewropayê li bajarê Biruksêlê li her civiyan û li ser mijarên Mafê mirovan, pêşeroja demokrasî û sîstema hikûmetî a ne navendî a federalî di Îranê de bas û nîqaş kirin.

Mijara sereke a wê konferansê "Mafê mirovan û demokrasî û Federalîz di Îranê de" bû ku ji aliyê Rêxistina Neteweyên Bê Nûner (UNPO) û bi alîkariya Kongreya Neteweyên Îranê Federal (CNFI) û nûnerên Parlemana Ewropayê ji Partiya Radîkal ya Dijî Tunûtûjiyê (Non – Violet Radical Party) hatibû organîzekirin.

Ji bi bilî çendîn Palamenterên YE'ê ji partiyên cur bi cur ên welatên vê yekîtiyê, Sekreterê Giştî yê UNPO, akadîmîsyen, pisporên kar û barên civakî û navneteweyî û gellek kesayetî û rêberên Opozîsyona Komara Îslamî a Îranê û partî û rêxistinên Kurd, Belûç, Ereb, Turk, Turkemen, Lor, û hêzên komarîxwaz û çepên demokrat ên opozîsyona Îranê beşdar bûn û li ser mijarên konferansê axivîn.

Eva yek ji konferansên herî girîng û bi bandor ên Opozîsyona Îranê tê hesibandin ku heta niha birêve çûye. Çendîn kanalên televîzyonî ên Ewropî û Îranê û Kurdî nûçe û raporên berfireh li ser konferansê weşandin.



Rapora berfirehtir li ser malpera me bixwînin...





# Peyama Sekreterê Giştî Yê PDKÎ Bi Hinceta Newroza 1388’an

**Hevwelatiyên hêja!**
**Kadro, Pêşmerge û endam û alîgirên xebatkar ên PDKÎ!**

**Xûşk û birayên ezîz!**

Newroz roja nûbûna xwezayê û bihara xweşik û bedew ji we ezîz û xweştiviyan, nemaze ji malbata serbilind a Şehîdan, ji girtiyên xweragir ên siyasî ku bi tawana mafxwaziyê îro di girtîgehên bixof ên rejîmê de jiyanê derbaz dikin û ji hembêza germ û tejî hezkirina malbatên xwe hatine bêparkirin û ji malbata wan girtiyên ku li benda azadbûna ezîzên xwe ên girtî ne, pîroz be.

Neteweya kurd yek ji wan netewane ye ku li mêjde rêz ji Newrozê girtiye û weke rojek neteweyî pêşwazî lê kiriye û pîroz kiriye. Her bi vê hincetê jî li cihên cuda cuda ên Kurdistanê weke edetê taybetî yê xwe, kurdan cejn û şahî lidar xistiye, lê xala hevbeş li hemû wan cihane hilkirina agir di êvariya vê rojê de ye. Agir wekî sembola ronahî û zalbûna bi ser tarîtiyê, her wiha zalbûna germahî bi ser werza sir û seqema zistanê û şahî, dîlan û keyfxweşî bi dora agir de ye.

Renge her di ravekirina vê serkevtinê de be ku çîvanoka Kaweyê hesinkar di dîroka kevin a me de pêk hatibe. Kawe rave û şîrove ji kurdekî zehmetkêş yê cergsotî yê kurd dike ku kurên wî yek yek hatine kuştin û mêjiyê wan bidin marên ser milên Zehak Paşayê kurdkuj û xedar ê wê demê ku mejiyên wan ciwanan bixwe, bona ku zêdetir bijî, heta ku di dawiyê de Kawe ji bo rizgariya wê hemû zilm û zordariyê û bona take lawê xwe û kurên din ên xelkê nehên kuştin, kutikê hesinkariyê hil dide ser milê xwe û çermê hesinkariyê lixwe dike û dikeve nava bajar û gazî ji wî xelkê kir ku kurên wan hatine kuştin û zilm û stem li ser wan tê meşandin, bi vî awayî leşkerekê bi dû xwe re kom dike û şer li dijî zulm û bêdadiya Paşa dest pê dikin û encama wî şerî bi kuştina Paşa û têkûpêkdana stem û xedariyê bi dawî tê û goya ew serkevtin jî di êvariya Newrozê de dibe û xelk bi wê serkevtinê bi cihên dûr di bilindahiyan de agir hil dikin û şahiyê digêrin.

**Xelkê xebatkar û mafxwaz yê kurd!**

Heke ew rave û şiroveyane ji Newroz û sombolên wê, hikayet ji salên kevin û serdemekê dike ku ji bo gellek neteweyên bextewer û rizgarbûyî ji çengên bê edaletî û zilm û çewisandinê, tenê weke serpêhatiyeke dîroka kavin û qedîm cihê vekolînê ye, ji bo me kurdan û netewên din ên Îranê ne tenê efsane û çîvanok nine, belku her niha tevî wê berbirû ne. Niha tarîtî, sir û seqem û Zuhakê zeman bi çengên bixwîn ên xwe gewriya neteweyên azadîxwaz girtiye û rojane xwîna çendîn kes ji ciwanên me li deverên cuda cuda yê Îranê û nemaze li Kurdistanê dirêjînin, mejiyê yên din bi nexweşiya bengdarî bi madeyên bêhişker tûş dikin, serwet û samana xelkê dirêjînin berîkên bêbin ên xwe û girûpên terorîst û mirovkuj ên mîna xwe di her dereke cîhanê de bin. Bi komplo û bernameyên xwe xelk yê kişandine bin hêla xizaniyê û dest bi ser nanê wan hejar û xizanan jî dagirtine û demekê ji bo jiyanek nemir nejî, nanekê didin wan ku weke mohreyekê di xizmeta armancên dijî mirovî ên rejîmê de bin.

**Lewra hevwelatiyên rêzdar!**

Di vê rojê de û bi hikevta Newroza 1388’an, em radigehînin ku ji bo me Newroz çîvanok nine, belkî mixabin niha desthilata Zuhakê demê bi ser serê xelkê me zal e û yên ku kurên wan hatine kuştin, xizanên zilmjêkirî mil bi milê keç û kurên rewşenbîr, rojnamevan, xwendekar, kedkar, kesayetiyên welatparêz û olî, bazarî û bi giştî hemû tex û qatên şiyar ên civakê li dijî Komara Îslamî, Zahakê gelên Îranê hev girtine û di şer de ne.


Rêzdar Mistefa Hicrî

Me guman tune ku careke din jî Kawe dê ser bikeve û Zuhak mehkûm bi nemanê ye. Lê ev serkevtine hewcehî bi fidakarî û berxwedanek zêdetir heye û tenê yekrêziya her çiqas bêtir a xelkê û hişyariya we ye ku dikare zûtir Zuhak ji nav bibe û cejna rasteqîn ya Newrozê pêk bihê.

Di vê derbarê de, peyama me ewa ye ku hemû çîn û qatek civakê, her çi zêde hev bigrin û bi yekdeng û bê tu gumanekê bi armanca hiloşandina vê rejîmê û avakirina hikûmeteke nû li ser hez û vîn û îradeya neteweyên Îranê gavan bavêjin.

Derbazbûyiya 30 sal desthilatdariya wê hukûmetê ji me re dibêje ku guhartin di naveroka vê rejîmê de çê nabe, lewra çavnihêriya guhartinê û hewildan ji bo wê meremê bi her awayekê diçe çarçoveya xizmetkirina bi dirêjkirina temenê rejîma Zuhak. Lewra em daxwazê dikin hemû ew kes û girûpên ku pêkanîna “tewehom”ê ji bo xelkê yan ji rêya her kiryar û gotinekê refa hevgirtî a xelkê aloz û tevlihev dikin û valahiya dixin nav refên yekgirtî ên gel, yan dixwazin gavên hişyarane ên xelkê ji bo hiloşandina rejîmê şil bikin û xebata wan ji rêya rast derxînin, dest ji pîlan û berjewendiyên xwe hilbigirin û tevlî refa hevgirtî a xelkê bibin, ji ber ku serkevtin di yekrêziyê de ye û xebata hevgirtî a Kurdistanê di sala borî de di bîranîna salvegera Şehîdkirina rêberê navdar ê gelê me Dr. Qasimlo û her wiha xebat û berxwedana yekgirtiyane a xelkê şiyar yê Merîwanê di meha Reşemeyê de, azmûnek serkevtî bû ku hemû li ber çavê me ye.

**Ezîz û xweştivîno!**

Her di vê hilkevta neteweyî de, em bi pêwîst dizanin rabigehînin ku partiya we, Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, rûmet û şanaziyê bi xebata hişyarane û hemdem ya yek yek a we keç û xortên wefadar bi rê baza kurdayetiyê dike ku di sala derbazbûyî de cîhan şahidê wê bû, di sala nû de jî em dê mil bi milê hev ji hemû karîn, şiyan û derfetan mifahê bistînin bona pêşdebirina xebatê û nêzîkbûn ji armancên me yên hevbeş ku azadî û rizgariya gelê me ji her care çewisandinekê ye.

Em bi wê hêviyê pêşwaziyê ji Newrozê dikin ku sala me ya 1388’an di bin siya fidakarî û yekrêziya neteweyên Îranê û bi taybet gelê kurd de, saleke tejî destkevt ji bo tevgera azadîxwaz be.

Careke din Newroza we pîroz be.


Dîmenek ji beşdarên şahîya Newrozê di binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ

# Serkevtina Mezin Ya DTP'ê Di Hilbijartinên Herêmî De...

**Azad Kurdî**

Hilbijartinên şaredariyê yên herêmî li Turkiyê roja 29'ê Adara 2009'an hatin lidarxistin û di encamê de Partiya Civaka Demokratîk (DTP) serkevtineke mezin bi dest xist. DTP'ê karî şaredariyên 98 bajar, navçe û bajarokan bi dest bixe ku du qat zêdetirî hilbijartinên berê bû. Ji bilî bajarê mezin yê Amedê, şaredariyên bajarên Wan, Sêrt, Batman, Colemrêg, Şirnax, Dêrsim û Idir'ê bûn yên vê partiyê

DTP'ê, eva di halekê de ye ku di hilbijartinên sala 2004'an de, DTP'ê 52 şaredarî biribûn.

Ev serkevtina mezin a Partiya Civaka Demokratîk destekvteke siyasî ye ku bêguman dê zêdetir xizmetê bi peşêveçûna doza Kurd li Turkiyê bike û pêvajoya demokrasî û gotûbêj û lihevtêgihîştinê bona çareserkirina pirsgirêkên navxweyî ên Turkiyê bibe mekanîzmek xurt û micid. Ev gave her wiha dikare bandoreke mezin jî li serkevtin û xurtbûna xebata demokratîk, aştîxwazane û sivîl a Kurdan li Turkiyê bike û pirsa Kurd bi fermî bike dozek siyasî û bala raya giştî a cîhanê ber bi aliyê vê doza berheq rabikşîne.

Li ser navê Kurdan 2 partiyên DTP û HAK – PAR ketin hilbijartinan ku DTP'ê hem dengên xwe û hem jî hejmara şaredariyên xwe li gora hilbijartina berê zêde kir. Li gora agahiyan, DTP'ê zêdetirî 2 milyon deng girt û Partiya Maf û Azadiyan jî 26 hezar deng wergirt. Serkevtina DTP'ê di hilbijartinna vê carê de, hin erk û wezîfeyên giran dixe stûyê rêberên vê partiyê ku ji vê delîveyê mifahê bistînin û pêvajoya berbipêşveçûna vê partiyê di nava dilê civatên xelkê Kurd li Bakûrê Kurdistanê xurttir bikin û bi kar û xebata berdewam û xizmetên rasteqîne, partiya xwe ji bo proseyên din ên demokratîk li Turkiyê berhev bikin.





Ji ber ku di hilbijartina vê carê de çend xalên balkêş hatin dîtin ku hewce dike lênihêrîn bi ser wan bê kirin. 1. Dengên partiya desthilatdar anku AKP'ê kêm kir, 2. ji aliyekî din Partiyên CHP û MHP dengên xwe û hejmara şarederiyên xwe zêde kirin. 3. Serbarê serkevtina berbiçav a vê hilbijartinê, nabe DTP li çend bajarên weke Mûş, Mêrdîn, Bîngol, Agirî, Bedlîs ê bê hay be, ji ber ku DTP di wan bajaran de bi ser neket û hewce ye ku bona bidestxistina wan jî bixebite ku eva jî erkên giran dixe stûyê vê partiyê û partiyên din ên Kurdî li Bakûrê Kurdistanê. çunkî hêj gellek maye heta Kurd bikarin şaredariyên din ên Bakûrê Kurdistanê ji destê AKP'ê û partiyên nijadperest derxînin. Bi taybet divêt DTP di stratejiyên xwe de hin guhartinan pêk bîne û bikare xwe ji bo hilbijartinên tên ên Palremanê jî amade bike. Ji ber ku pêwîst e ku DTP hewl û xebatên berdewam bike ku hejmara nûnerên xwe li Parlamentoyê jî du qat zêdetirî niha bike.

Çend xalên erênî yên serkevtina DTP di hilbijartinên 29'ê Adara 2009'an de jî hebûn ku yên giring, bidestxistina şaredariyên parêzgehên Wan, Sêrt û Idir'ê bû. Heta niha sedan caran rêberên AKP'ê û partiyên din ên Turkiyê pirsa siyasî a Kurd înkar dikirin û hewil didan ku zêdetir weke dozeke aborî bidin xuyakirin, lê encamên hilbijartinên vê carê ew neçar kirin ku bi fermî wê rastiyê qebûl bikin. Lewra bû ku Serok Wezîrê Turkiyê, Erdogan got ku serbarê xizmetên me yên li Kurdistanê kirine, lê Kurdan deng dan nasnameya xwe û dengên Kurdan ji bo nasnameya siyasî çûn. Em dê vê encamê binirxînin. AKP di hewl û bizavê de bû ku bajarê Amedê ji destê Kurd derxe, lê serbarê ku DTP li Amedê ser ket, sê bajarên din jî yên ku di destê AKP'ê de bûn, ketin destê DTP'ê. Xaleke din a balkêş eva bû ku DTP'ê di hilbijartinan de, li 17 deveran berendamên Jin nasandibûn ku 13 Jinan karîn serkevtinê bi dest bixin ku eva jî ji bo vê partiyê rekordek nû û mezin di asta Turkiyê de bona beşdarî û serekvtina jinan tomar kir. Ji ber ku tenê 2 jinan li ser lîsteya AKP'ê karîn ser bikevin û jinek jî ser bi lîsteya CHP'ê. Beşdarîkirina jinan weke faktereke jûjen û demokratîkbûnê tê hesibandin.

## Mafê Mirovan



**Nivîsîn: Peter R. Baehr**
**Wergeran: Mecîd Heqî**

# Rola Mafê Mirovan Di Siyaseta Dereve De

***Sê "nifşên" mafên mirovan***

Edebiyata mafên mirovan bi giştî sê nifşên mirov li hev cuda dikin.

Nifşa yekem qala mafên sivîl û siyasî – mafên "kilasîk" ên mirovan – dike. Mafên aborî, civakî û çandî nifşa duyem pêk tînin. Nifşa sêyem di xwe de çendîn mafên kollêktîv (kom) berhev dike ku di wan salên dawî de balek zaf bo aliyê xwe kişandiye. Ew mafane bi vî awayî ne:

* mafê peşveçûnê;
* mafê aştî;
* mafê hebûna jîngehek paqij;
* mafê xwedtiya serekaniyên sirûştî
* Mafê hebûna mîratên çandî

Ew du mafên dawiyê bi giştî bi mafê hevbeş yê mîratên çandî yên mirovaniyê tê zanîn. Hinek ji wan mafên nifşa sêyem ji aliyê welatên berê yên komonîstî û welatên cîhana sêyem hatine piştgirîkirin û li welatên Rojava cihê gengeşeyê ne. Ev mafane ji ber nediyarbûn û rohnnebûna naveroka wan ketine ber rexneyan. Bo mînak: mafê aştiyê: pirraniya xelkan dê alîgiriyê ji cewhera aştiyê bikin, lê ew hevoke demekê dikare wateyê bide ku pirsên wek: aştî bi çi mercekê? bi çi nirxekê? bên bersîvdan. Ewa jî ne xuyaye ku kê xwediyê wî mafî ye: takekes, deste û girûpên mirovan an dewlet – û ew yeke dê çawa cîbicî be. Ji aliyê din ve, dîtina Katarina Tomasevski balkêş e, dema dibêje: "Hizra aştiyê wek mafek mirovî belkî alîkariya hişyariya giştî ya civakê bike û herkes xwe bi kevirek ji bo avadankirina aştiyê bizane û piştgiriya giştî bona siyaseta bêçekkirinê bi dest bixe." Hevoka "nifş an generasyon" hinek cihê xem û nigeraniyê ye. Ew pêşniyara diyardeyên dûhev dike, bi awayekê ku nifşa nû cihê yê berê bigre. Lê ewa derheqê "mafên mirovan" ne cihê basê ye. Berevajî wê ewa bi wê wateyê tê ku sê "nifşên" mafên mirovan hene û diviya rêz ji wan bê girtin. Serencam fenomenek balkêş ya mafê taybetî yê mirovan heye – ku ew jî mafê diyarîkirina çarenivîsa xwe ye – ewa jî hem bi nifşa yekem û him jî bi nifşa duyem re girêdayî ye. Ew mafe di Carnameya Cîhanî ya Mafên Ramyarî û Sivîl û di Carnameya Cîhanî ya Mafê Aborî, Civakî û Çandî de hatiye. Hegera wê ewa ye ku dema dewletên Asyayî û Afrîqî pirranî bûn, dema ku ew du carnamene li civîna giştî ya Neteweyên Yekgirtî di sala 1966'an de hatin pejirandin û hat xwastin bi wî awayî giringiya wan mafane bidin zanîn.

**RONÎ**

Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên "Agirî" re



**Ebdullah Hicab**

# Hilbijartin û Xerîteya Siyasî Li Turkiyê

Hilbijartinên herêmî eger ji pêvajoya demokrasî li Turkiyê re karîgerî nebe jî, ji bo doza Kurd li Bakûrê Kurdistanê meydana hêz û hunera siyasî ye. Dema hilbijartinê ku bi tenê heftiyekê li pey cejna neteweyî ya Kurd, Newrozê re bû, derfetek baş bû ji hêzên Kurd re ku li ser bingeha bernameya çareseriya doza neteweyî li Turkiyê, hêz û şiyana xwe nîşan bidin. Her çend hêj li Kurdistanê hilbijartin li jêr bandora saw a mîlîtarîzmê birêve diçe, lê dîsan jî rê heye ku daxwazên neteweyî di pilatformên siyasî de bikevin rojevê. Di dema amadekirina vê nivîsînê de, ne hilbijartin bûye û ne nîşaneyên encaman diyar in, lewma ev gotar xwe ji şiroveya rewşa piştî hilbijartinê bi dûr digre. Parelmantarîzm û sîstema hilbijartinên herêmî ji ber pêwîstiya wan ya bi xwe nûkirinê, her tim bi xwe re vekirin û biwêriya siyasî tînin. Ji tevgera Kurdistanê re hilbijartinên herêmî meydana sereke ya herî bi bandor e ku tê de daxwaziyên xwe yên siyasî û neteweyî bîne rojevê. Lewma hilbijartinên herêmî, ger baş bên bikaranîn û tê de daxwaziyên li gor xwesteka siyasî yên civakê bêne rojevê, ji Kurdan re heta ji hilbijartina Parlemanê jî giringtir in.

Ezmûnên hilbijartinên herêmî yên piştî vegeşîna tevgera neteweyî li Bakûrê Kurdistanê, digel destkevtên xwe, lê ji pirr aliyan ve jî kêmasiya partî û saziyên legal ên Kurd nîşan didin. Ji ber ku heya niha ew derfet weke meydana milmilaniya navbera tevgera Kurd û hêzên parêzerê siyaseta dewletê li Kurdistanê nehatiye bikaranîn. Her çend zordarî û zexta dewletê astenga sereke ya ser rê be, lê heya wê dera ku bikeve ser milê Kurdan bi xwe jî, ew derfet bi başî nehatiye bikaranîn. Bi taybet mijara hevpeyamaniya partiya ku bi awayê legal nûneriya daxwaziyên siyasî yên tevgera Kurd dike, bi hêz û tevgerên çep yên ji civak û rastiyên civakê qedyayî re zerera mezin daye doza Kurd li Bakûr. Di hilbijartina sala 2004'an de, partiya HADEP bi awayekê hate neçarkirin ku bi kesayetî û grûpên çepgir ên Turk re bibe hevpeyman. Ew bû heger ku beşek ji berendamên şaredariyan li herêma Kurdistanê li gor pîvan û daxwaziyên siyasî, ji ser ve re bên diyarîkirin. Ew berendam ji kultûr û daxwaziyên gelê Kurd bi dûr bûn. Pilan û pirojeyên utopîk (xeyalî) weha ew xistibûn çarçoveya bajarê xeyalî yê Eflatûn, ku wisa dizanîn dê ji hin bajarokên Kurdistanê re şoreşa sosyalîstî li Turkiyê û ji wir re jî li hemû cîhanê dest pê bikin. Ji aliyê din ve, partiya nû avabûyî ya AKP bi hevpeymaniya bi eşîr û oldaran re û pê bikaranîna hest û hêviyên olî yên civaka Kurdistanê bi awayekê pêşve çû ku ne tenê li piraniya herêmên Bakûrê Kurdistanê bi ser ket, belkû ew serkevtin kire bingeh ji bo xurtkirina desthilata xwe li hemû Turkiyê.

Hevpeymaniya Kurdan bi çepên Tirk re ew zerera mezin ji tevgera Kurd da ku bajarên weke Wan, Agirî û gellek deverên ku di hemû dîroka xwe de bi çavê erênî temaşey Enqerê nekirine, bikevin destê AKP'ê. Kêmasiya partiya HADEP bi tenê hevpeymaniya bi çepên Tirk re nebû. Partiyê her weha daxwazek rohn û eşkere ji çareseriya pirsa Kurd re jî neanî rojevê. Coşa duruşmên Newroza 2004 wiha partî sermest kiribû ku rêveberên partiyê wisa dizanîn êdî hemû Kurdistan dê bikeve dest wan. Lê şikesta di hilbijartinê de hinekê ew şiyar kirin. Di hilbijartina parlemanê ya sala 2007ê, dûvhajoya HADEPê, Partiya Civaka Demokratîk (DTP) hinekê xwe komî ser hev kir û bi pilanek zêde vekirî ji bo aştiya civakî û çareseriya pirsa Kurdistanê kete hilbijartinê. Destkevtên wê demê hinekê ji yên hilbijartina herêmî baştir bûn. Lewma DTP di pêvajoya karê xwe yê siyasî de, bi hêlana pêwendiyên dostane bi çepên Turk re, xwe bi wan ve girê neda û ew helwêst weke pêngavek erênî, karîgerî li ser rewşê kir. Çûna DTP'ê ber bi Kurdayetiyek hê eşkere ve, di Newroza îsal de xuya bû. Lewma hêviya ku di hibijartina îsal ya li Bakûrê Kurdistanê DTP bibe partiya 1 ê niha ji caran xurttir e. Vebûna hin deriyên biçûk yên siyasî li Turkiyê jî karîgerî li ser wê rewşa heye. Lê ew derî ku di encama ked û berxwedana tevgera neteweyî li Bakûrê Kurdistanê de vebûn ji aliyê kes û rêxistinên din ve jî tên bikaranîn. Lewma pêşveçûna rengeyî ya DTP bi tenê ji derfetên nû yên siyasî li Turkiyê re girêdayî nine. Ew destkevta herî eşkere ya zelalbûna siyaseta DTP di warê Kurdayetiyê de ye. Pêşketinên siyasî ên wan çend salên dawîn li hemû Tirkiyê balkêş in. Di serî de dema ku partiya oldar a AKP kete meydana siyasî, hemû partî û rêxistinên xwedî bandor yên din îflas kirin. Diyar bû mîlîtarîzm û partîkariya dewletî ku bi salan bû bi rûkar, maskeya demokrasiyê dabûn ber rûyê Turkiyê, tu encam nedane û bê çare mane. Li hilbijartina parlemanê, di sala 2007'an de, partiyên ku ji sînorê 10% yê yasaya hilbijartinan li Turkiyê derbaz bûn û çûn parlemanê, tenê 3 partî bûn, lê 4 partiyên din jî bi berendamên serbixwe ketin hilbijartinan û piştî serkevtinê weke girûp, xwe bi rêxistin kirin û niha weke koma partiyê di parlemanê de dixebitin. Xerîteya partiyên siyasî li Turkiyê zû bi zû diguhere. Digel wê hindî jî ewa 4-5 sal e di siyaseta Turkiyê de jî weke aboriya welêt, xwegirî an istiqrarek çê bûye. Partiya herî xurt li Turkiyê, partiya desthilatê, Partiya Edalet û Pêşveçûn (AKP) ye. AKP ya bi serokatiya serokwezîrê demê yê Turkiyê Receb Teyib Erdogan di sala 2001'an de li ser mîrateya partiya Rifah ya Necmettin Erbakan hate avakirin. AKP partiyek parêzvan yan konservatîv ya olî ye ku li ser bingeha aboriya lîberal ji bo Tirkiyek vekirî bi siyaseta îslamiya nerm (modêre) kar dike. Ji ber rehên xwe yên olî û girêdana endamên wê yên sereke bi terîqeta Neqşbendî re, Erdogan û partiya wî li Bakûrê Kurdistanê xwedî bandorek xurt in. Di hilbijartina pêşîn ya herêmî de, AKPê gellek ji şaredariyên ku dikarî bikeve destê partiya DEHAP'ê, ji Kurdan standin. Niha jî tê payîn ku AKP reqîbê herî xurt yê DTP li Kurdistanê be. Partiya ku di rêza duyê de li hilbijartina sala 2007ê xwe nîşan da, partiya Komariya Gel (CHP) bû. CHP bi serokatiya Deniz Baykal, partiyek kemalîst e ku bi navê sosyal demokrasiyê rêbazek teng ya neteweperestiya Tirk dişopîne. Ji sala 1923 ve ku partî hatiye damezirandin heya niha hertim ji bo Turkiyeke xwediyê yek ziman, yek al û yek netewe kar kiriye û li hember daxwazên siyasî yên gelê Kurd de bi tundî rawestaye. Baykal di wan salên dawî de bi pirojeyên aborî dixwaze mijara Kurd ji ser hêla neteweyî derxe û pirsa Kurd bi tenê ji mesela aborî re girê bide. Lewma li Kurdistanê tu hêvî nîne ku CHP bikare destkevtekê di hilbijartinên nû de bi dest bixe. Partiya sêyemîn ya xurt a Turkiyê, partiya neteweperest ya Tevgera Neteweperest (MHP) ye ku Devlet Bahçeli serokayetiya wê dike. Îdeolojiya wê partiyê neteweperistiyek rût e û diruşm û sembolên wan hema hema dikevin kategoriya partiyên nejadperest û rasîst. MHP ji gelê Kurd û daxwaziyên neteweyî yên Kurdan re dijminahiya eşkere dike û nayê payîn ku li Kurdistanê xwedî bandor be. Her çend ji ber şaşîtiyên Kurdan bi xwe, di hilbijartina sala 2004'an, de li hin navçe û bajarokên Kurdistanê hinek deng anîn. Partiya Çep a Demokratîk (DSP) bi serokatiya Zeki Sezer, Azadî û Hevbendî (ÖDP) bi serokatiya Hayri Kozanoglu, Yekîtiya Mezin (BBP) ku serokê wê Muhsin Yazicioglu li rojên berî hilbijartinê, di qezaya ketina hilîkopterê de hate kuştin, Partiya Komunîst (TKP), Demokrat (DP), "Seadet (SP), "Kesk Yeşiller", "Welat Yurt Partisi" û partî û rêxistiên biçûk yên din ku li ser bingeha nasyonalîzma Turk an ol, lîberazîm û sosyal demokrasiyê kar dikin li Kurdistanê xwedî bandor nînin. Her weha partiyên Kurd weke HAK-PAR û KADEP jî weke rêxistinên biçûk yên Turkiyê bandorek wisan li ser hilbijartinan nabin. Piştî zelalbûna encamên hilbijartinan, jiyana rojane ya siyasî dest pê dike. Hem li bajar û navçeyên ku ketine destê DTP, û hem jî li heremên di dest AKPê de hêviyên Kurdan ew in ku guhertin û nîşaneyên çareseriyê bibînin. Salên li pêşiya me dê ji pirsa Kurd û çareseriya pirsê re demên dîrokî bin. Gelo di milmilaniya navbera AKP û DTPê ya ji bo guherîna Turkiyê û çareserkirina demokratîk a pirsa Kurd de kî dê pitir xwe nîşan bide, dê salên li pêşiya me nîşan bidin.

## Hevpeyvîna rêzdar Hesen Şerefî tevî Rojnameya Rûdaw

# "KAREK DURİST NINE KU HÊZEK YAN ALİYEK AWAYÊ XEBATÊ Jİ BO KURDÊN PARÇEYÊN DİN DİYARÎ BİKE"

**Agirî- Qirar e ku di meha Nîsana 2009'an de, civînek berfireh bi beşdariya gellek partî û rêxistinên her 4 parçeyên Kurdistanê li Hewlêrê bê lidarxistin. Derbarê pirsên têkildar bi rojeva wê civînê, Rojnameya Rûdaw'ê hevpeyvînek bi Hesen Şerefî, berdevkê PDKÎ û Cîgirê Sekreterê Giştê yê vê partiyê re pêk aniye ku eva jêr deqa wergerandina wê ya Kurmancî ye:**

Kekê Hesen Şerefî, ew dema we xweş.

**Dema we jî xweş be.**

**Kekê Hesen, derheq wê konferansa ku biryar e li Hewlêrê bê lidarxistin, nêrîna we weke PDKÎ çi ye ku ew konferanse qise li ser çêkirina gotareke Kurdî ji bo hemû parçeyan û danîna çekan dike?**

**Hesen Şerefî:** Ya rast eva ye ku heta niha tu aliyekî berpirsiyar û pêkîner ê wê konferansê ku cenabê we basa wê dikin, bi me re têkilî neçêkirine û negotine ku dê konferanseke wisa pêk bê û naverok, bas, mijar û rasipartiyên wê dê çi bibin. Lewra ez dixwazim ji we re bibêjim ku heta niha tu pirsek di vê derbarê de bi me re nehatiye baskirin. Lê eva ku were ser vê çendê ku konferansa han bihê lidarxistin û gotara Kurdan bike yek, ez hez dikim wê yekê bibêjim ku Hukûmeta Herêma Kurdistanê mafê wê yekê heye ku têkilî bi hemû welatên dûr û nêzîk ên xwe re hebe. Bona ku berjewendiyên xwe biparêze û wê ceribînê ji niha jî serkevtîtir bike.

Hûn dizanin ku Hukûmeta Herêma Kurdistanê û ev tecrûbeya Kurdî ku li vir (Başûr) heye, azmûnek gellek girîng e û em weke erk û wezîfeya hemû Kurdekê li tev parçeyên Kurdistanê dizanin ku wê ceribînê biparêzin. Piştevanê wê bin, alîkariyê pê re bikin da ku di kar û barên xwe de serkevtî be û nimûneya hikûmeteke wisa demokratîk bixin ber çavê raya giştî a cîhanê ku têbigihîjin, heke derfet û firsend hebe Kurd dikaribe çi cure hikûmetek hebe û xwe rêve bibe û li hember çavê dinyayê xwe derxe holê. Ewa rastiyek e ku heta niha jî me weke PDKÎ erkê xwe baş meşandiye û rengê vê hindê nade ku di vê derbarê de, Hukûmeta Herêma Kurdistanê tu gilî û gazindeyek berbirûyê PDKÎ kiribe ku karek kiriye an helwestek girtiye ku di berjewendiya wê hikûmetê de nebûye. Lê serbarê vê çendê jî ku em bi erk û wezîfeya hemû Kurdên parên din dizanin ku alîkarî û piştgiriya wê hikûmeta Kurdî bikin, di heman demê de, em wezîfeya wê hukûmetê jî dizanin ku hevkariya pêvajoya tevgera Kurd li parçeyên din jî bike. Heke jê re çê nebe jî ku alîkariya tevgera Kurd li parçeyên din bike, aliyê kêm wisa neke ku bi lawazbûna tevgera Kurd li parçeyên din xilas be. Yanî durust nîne wisa bikin ku ne Hikûmeta Herêmê, ne pêşeroja Kurdan li Îranê, Kurd li Turkiye û Sûriyê ziyan û zirarê lê bikin. Em çavnihêrê vê çendê ne ku eger Hukûmeta Herêmê nekare jî berjewendiyên Kurd seba ew têdîtinên ku tevî vî alî an wî alî heye, xurt bike, aliyê kêm divê karekê neke ku bi zirarê wan tevgerane xilas be.

Min got, heta niha em ji bo konferanseke wilo nehatine agahdarkirin. Heke qirar e ku em aliyekî dozê bin, eger normal tiştek wisa jî hebe, heke bi rastî konferans be! Basa pirsa Kurd bi giştî bike ku vêc û berjewendiyên giştî ên Kurdan bi awayaekî giştî li hemû parçeyan di çi de ye, xwezayî ye ku li wir dê gellek pirs derkevin rojevê, dê pirr dîtin û nêrîn bên dayîn, zaf ra û hizr dê bên xuyakirin ku dikare bal bi ser wan bihê kişandin. Lê derbarê ev hevpeyvîna ku Omer Mîranî li Turkiyê kiriye, serbarê vê çendê ku me heta niha xebata çekdarî weke awayek ji metodên xebatê red nekiriye, lê me tu xebat û çalakiyek leşkerî jî heya niha nemeşandiye ku welatekî cîran bixwaze bike hêcet û mihane bona gilî û gazindekirin ji Hukûmeta Herêma Kurdistanê yan zextanîn bo ser hêzên Başûr.

**Beriya ku Konferansa han bê lidarxistin, armancên xwe derxistiye holê, weke ku Serokê Herêmê jî li ser de axiviye, yek ji xalan danîna çekan e, gelo hûn weke PDKÎ amade ne ku di wê qonaxê de çekan danên?**

**Hesen Şerefî:** Bi vî halî jî dikaribe çavnihêriya vê yekê hebe ku li wî parçeyî ve êrîş bo ser welatek cîran nehê kirin. Min nebihîstiye ku Serokê Herêmê tiştek wisa gotibe. lê durist nine ku divê hêzek siyasî şeklê xebata xwe Li Kurdistana parçeyê din bi vî awayî diyarî bike ku jê re tê gotin!

Ez bawer im eva ne tiştek durust e. Lê mirov dikaribe bêje ku vira Kurdistana Îraqê ye, meslehet û berjewendiya xwe heye. Ew hêzên ku lêre ne, rêz û hurmeta xwe hene, lê nabe li vir êrîşî ser welatekî cîran bikin. Eva gotinek e ku heta niha hatiye kirin û me jî negotiye ku em dê berevajî vê yekê tevbigerin.

Lê nabe tu bibêjî li Kurdistana Îranê divê awa û metoda xebata te wiha be.



Hesen Şerefî:

### "HEKE Jİ HİKÛMETA HERÊMA KURDİSTANÊ RE ÇÊ NEBE ALÎKARİYA TEVGERA KURD Lİ PARÇEYÊN DİN BİKE, ALİYÊ KÊM WİSA NEKE KU Bİ LAWAZBÛNA TEVGERA KURD Lİ PARÇEYÊN DİN XİLAS BE"

Her wekî heta niha me qet bi bira û xûşkên xwe li Kurdistana Îraqê re negotiye, bila awayê xebata we wisa be!

Ez dixwazim tu bala xwe bidî ser vê yekê, heta niha ji bo pirsa gotûbêj û aştîxwaziyê, PDKÎ berî her kes û aliyekê ew pêvajo û rêbaz girtiye pêşberî xwe. Her di rêya vê rêbazê de bû ku me, mamsota û rêberê xwe yê mezin û navdar, Dr. Qasimlo li ser maseya gotûbêj bi Komara Îslamî a Îranê re ji dest da. Ewa durust nîne bihê gotin, divê tu her wê şekl û rêbaza ku rejîma desthilatdar bi ser parçeyê we dixwaze, bi wî awayî xebatê bimeşînî. Ez bawer im ku eva daxwaziyeke gellek dostane û birayane ji hêza her parçeyekî din nine, ku bi vî awayî xebatê bikin ku ji we re tê diyarîkirin.

**Qise li vê yekê jî tê kirin ku armanca konferansa han ewa ye ku her yek ji welatên Îran û Turkiye efûyekê ji bo PDKÎ û PKK'ê der bikin, hûn bawer dikin wê yekê zemanet û garantiyek heye!?**

**Hesen Şerefî:** Min jê ve nîne Kurd ku daxwaza mafên xwe dikin, şaşî û xetayek kiribe û pêwîstî bi vê yekê hebe ku aliyek efû bike, ew jî aliyê ku mafên wî binpê dike. Me karek nekiriye, me zilmek li tu kesekî nekiriye heta em lê bixwazin ku li me bibore yan afûyê ji bo em bide. Heke

**Rêzdar Be Roja Şehîdên Kurdistanê**

**10’ê Xakelêweya îsal (1388’an), 62’hemîn salvegera şehîdkirina Pêşewa Qazî Mihemed û hevalên wî ye. Di roja şehîdên Kurdistanê de, em hemû şehîdan silav dikin û wan bi bîr tînin. Herweha serê rêz û hurmet û bejna xwe li hember hemû şehîdên rêya rizgariya kurd û Kurdistanê de ditewînin. Di vê rojê de em dîsan bi wan re peymanê nû dikin ku heya bicîhatina hêvî û armancên şehîdan, dê rêya wan bidomînin.**

**Desteya Weşana Agirî**

agiri

**Paşkoya taybet bi hilkevta 10 Xakelêve, Roja Şehîdên Kurdistanê** **Hejmar: 108**

# Rê û Resma Roja Şehîdên Kurdistanê Li Binkeya Deftera Siyasî A PDKÎ Birêve Çû



Roja duşem, 30.03.2009’an, bi hinceta 62’emîn salvegera şehîdkirina Pêşewa Qazî Mihemed û hevalên wî, Roja Şehîdên Kurdistanê, rê û resmek bi beşdariya endamên rêberiya PDKÎ, nûnerên çend partiyan li beşên din yên Kurdistanê û hejmarek zaf ji Kadro û Pêşmergeyên vê partiyê, endamên rêxistina eşkere û malbatên partiyê, di binkeya Deftera Siyasî a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê de birêve çû.

Di yekem beşa rê û resmê de, beşdarên wê bi meşeke rêzgirtinê serdana goristana şehîdên PDKÎ kirin û li ser gorên wan sirûda “Ey Şehîdan” û “Ji bo min rondika xemê nerêjin” xwendin.

Piştre rêzdar Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDKÎ tevî keçe şehîdekê, tacegulek danîn ser gora şehîd Seyîd Selam Ezîzî, endamê berê yê Deftera Siyasî a PDKÎ.

Di beşa duyem a rê û resma Roja Şehîdan de beşdaran serdana pêşangeha wêneyên şehîdan li salona fêrgeha Siyasî-Nizamî kirin. Di wê pêşangehê de, bi hezaran wêneyên şehîdên xebata azadîxwaziya PDKÎ ketin ber çavê beşdaran.

Beşa sêyem a rê û resma han di salona giştî a civînên PDKÎ de bi xwendina sirûda neteweyî a “Ey Reqîb” û ragirtina deqîqeyek bêdengî bona rêzgirtin ji canê paqij yê hemû şehîdên Kurdistanê dest pê kir.

Di vê beşê de peyama Deftera Siyasî a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi vê hincetê, ji aliyê rêzdar Rostem Cehangîrî, endamê Polîtbîroya PDKÎ ve hate xwendin, her wiha peyamên Yekîtiyên Xwendekaran, Ciwanan û Jinên Demokrat ên Kurdistana Îranê, bi hinceta Roja Şehîdan hatin xwendin.

Her wiha sirûda “Ey Şehîdan” û “Ev Şehîdane” ji aliyê Koma Hunerî ve hate pêşkêş kirin û pexşana “Sozek ji bo karwana Xakelêwe” û helbesta “Xwîna Xakelêwe” jî hatin xwendin.

# Semînara Roja Şehîdên Kurdistanê Li Bajarê Silêmaniyê Birêve Çû



Navenda Nûçeyan a PDKÎ da zanîn ku roja sêşem, 31.03.2009’an, semînarek bi navê “Bila roja 10’ê Xakelêwe, Roja şehîdbûna yekem Serok Komarê Kurdistanê bibe roja şehîdên Kurdistanê” li bajarê Silêmaniyê di hola Diyalog a Mekteba Rêxistinên Demokratîk yên YNK li wî bajarî birêve çû.

Di semînara han de ku ji aliyê komek ji rojnamevan û çalakên siyasî ên Rojhilatê Kurdistanê ve pêk hatibû, birêzan Selah Muhtedî, Ferîd Esedsedr û Dr. Keywan Azad Enwer, li ser rola Pêşewa û Komara Kurdistanê di bizava rizgarîxwazî a Kurdistanê de çend gotar pêşkêş kirin.

Piştre beşdarên semînarê bîr û rayên xwe derheq gotarên pêşkêşkirî, di peyivîneke vekirî de derxistin holê û hemû beşdarbûyên semînarê li ser wê bawerê bûn ku divêt roja lidarvekirina Pêşewa Qazî Mihemed di hemû beşên Kurdistanê de bibe Roja Şehîdên Kurdistanê.

Şandeke Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ku pêkhatibû ji Nahîd Husênî, Mihemed Sahibî û Erfan Rehnimûn, endamên Komîteya Navendî a PDKÎ, beşdarî semînara han bûn û bi awayekî çalak di bas û mijarên wê semînarê de beşdarî kirin.

Semînar piştî zêdetir ji 3 demjimêran bi dawî hat.

# Peyama Deftera Siyasî A PDKÎ Bi Hinceta 10'ê Xakelêwe, Roja Şehîdên Kurdistanê

**Keç û xortên azadîxwaz yên neteweya Kurd!
Hevwelatiyên birêz!**



Rêzdar Rostem Cehangîrî, endamê Deftera Siyasî a PDKÎ de dema xwendina peyama Polîtbîroyê de

Roja 10'ê Xakelêweya 1388'an a Rojî, 62'emîn salvegera lidarvekirina Pêşewayê Kurd û yekemîn Serok Komarê Kurdistanê, Qazî Mihemed û hevalên wî, Mihemed Husênxanê Seyf Qazî û Ebdulqasim Sedrî Qazî ye ku piştî hiloşandina Komara Kurdistanê, di roja 10'ê Xakelêweya sala 1326'an a Rojî(1974) de piştî dadgehîkirina bi tevahî nimayişî, li qada Çarçiraya bajarê Mehabadê anku li wî cihî ku Pêşewayê Kurd avakirina Komara Kurdistanê lê ragihand, hatin îdamkirin.

Ev roje ji bo neteweya Kurd yek ji wan rojên tal e ku dîroka serhildana bizava Kurd û berxwedana neteweya me bi xwe dîtiye. Rojek ku mêjdem e wek roja şehîdên Kurdistanê hatiye binavkirin. Bona ku di wê rojê de xortên neteweya Kurd bi hev re rêz ji fîdakarî û nîştimanparêzî û dahêneriya pêşewayê Kurd bigirin û bîranîna wî bilind binirxînin û bikin roja emegdarî bi rê û rêbaza pîroz a wî û her wiha roja rêzgirtin ji xebat, berxwedanî û canfîdayiya hemû şehîdên Kurdistanê. Yên ku bi gorîkirina xwe û jiyana xwe, belgeya man û mewcûdiyeta neteweya Kurd mohr kirin û domandina xebat û rêya serkevtinê bi keç û xortên neteweya me sipartin.

Diyare ku rêzgirtin ji bibîranîn û cangorîtiya şehîdan tenê bi rojek ji salê nahê bertengkirin, di rastî de hemû rojek, roja rêzgirtin û bîranîna şehîdan û nûkirina peymanê tevî wan goriyan e.

Lê 10'ê Xakelêwe bi vê manayê ku îşare pê hate kirin, cem hemû keç û xortên Kurd girîng û dîrokî ye, ji aliyekê ve eyankerê ew hemû zulm û zorî, tepeserî û binpêkirina mafên gelê Kurd e ku bi dirêjahiya dîroka bixwîn a xwe pê re berbirû bûye û ji aliyê din ve nîşana çavnetirsî û biçokdanehatina keç û xortên neteweya Kurd e.

Rejîma dîktator a Paşatiyê li Îranê bi darvekirina Qazî Mihemed û hemû ew kesên ku piştî Komara Kurdistanê canê wan jê hate standin, xewna wê didît ku bi vî karê dijî mirovî, Kurdan ji mafê rewa yên xwe dûr bixin û tevgera Kurd ji nav bibin. Lê her bi vî awayî ku Pêşewa di demên dawîn yên jiyana xwe de got ku ji her dilopa xwîna wî rêberê mezin û hemû şehîdên Kurdistanê çend Qazî Mihemed û bi hezaran canfîdayên din ji bo Kurdistanê dê serî hildin.

Ev gotina piştî nemana Komara Kurdistanê û îdamkirina Pêşewa Qazî Mihemed bi tevahî û bi kiryar rastiya xwe selimand û hat dîtin ku keç û xortên neteweya Kurd bi birînên kûr û dîtina rojên bijan biçok de nahên û hertim û heta gihîştin bi armanc û hêviyan, dê vê rêbazê bişopînin ku me ber bi armanc gihîştinê dibe û bi wan rêberan re wefadar bimînin ku bi neteweya Kurd û armancên wê emegnas bûn û di pêxema wan û armancên wan de canê xwe ji dest dane.

Niha Pêşewa Qazî Mihemed wek sembola azadîxwazî û qehremanetiya rêberek Kurd li dilê her Kurdek û di rûpelên dîroka xebat û berxwedaniya Kurdan de cih girtiye û bi şanazî ve bas jê tê kirin.

Îro di halekê de em di roja şehîdan de rêz ji şehîdan digirin ku ala Pêşewa di parçeyek Kurdistana azad de bi eşkere û di parçeyên din yên Kurdistanê de bi awayên cur bi cur li destê keç û xortên neteweya Kurd tê hildan û sirûda "Ey Reqîb" ketiye ser zarê her Kurdek welatparêz.

Di hember de Mihemedriza Şah wekî bikujê Pêşewa kete ber kerb û kîna gelên Îranê û bi xirabî û serşorî ve dawî bi temenê wî hat û heta nehêlan ku di bihostek axa welatê xwe de jî bihê çalkirin. Her çiqas ku mîratgirên rejîma paşayetiyê jî li çarenivîsa Mihemedriza Şah ders û şîret wernegirtin û her ew siyaset û pêvajoya dijberîkirina xelkê û tepeserkirina mafên însanî û neteweyî yên gelên Îranê tundtir û zêdetir ji rejîma berê girte pêşberî xwe û bi awayekî hovane didomînin. Bi vî awayî jî xebata Kurd û tevgera berheq a wî rû ji geşekirin û çiqavêtina zêdetir e û doza Kurd wek pirsek girîng a deverê xwe daye holê û bîr û raya giştî a cîhanî jî zêdetir jê haydar bûye. Bi vî awayî jî heya gihîştina Kurdan bi azadî û mafên neteweyî navberek din heye ku domandin û pîvana vê rêyê jî erkê her Kurdek û li serweyî hemûyan jî erkê Partiya Pêşewayê nemir Qazî Mihemed û endam û Kadro û Pêşmergeyên wê ye. Sirûştî ye, partiyek ku Qazî Mihemed ava kiribe, Dr. Qasimlo darêjer û vejînerê wê be û Dr. Şerefkendî giraniya birêveberiya wê li stû be, bi liberçavgirtina cangorîtiya hezaran şehîd û xortên dilsoz yên xwe, her wiha bi vê jêhatî û pêgeha ku bi xweşî ve di nav civakên xelkê Kurdistanê û derve de heye, dikare li domandina pîvana vê rêyê jî heya serkevtina yekcarî û bidestveanîna hêvî û armancên Kurdan li Kurdistana Îranê rolek bibandor û karîger a xwe bilîze û li hember canê pak yê şehîdan û dîroka bixwîn a Kurdan bi giştî dê her wiha serbilind be.

**Keç û xortên neteweya Kurd!**
Derketin û kifş û eşkerebûna kakil û rûçikê rastîn yê rejîma Komara Îslamî

a Îranê bo gelên Îranê û cîhana derve bo hemû aliyekê xuya kiriye ku ew rejîma ne ligel serdem û bi hevrejiyana bi aşîtî û aramî digunce û ne jî misogerbûna demokrasî û mafên neteweyî yên gelên Îranê di çarçoveya berteng û bîr û hizrên paremayî yên wê de cih dibe.

Lewra gelên Îranê û li serweyî hemûyan jî gelê Kurd li Kurdistana Îranê gihîştine vê encamê ku take rêya misogerbûna mafên însanî û neteweyî yên wan, hiloşandina vê rejîmê û anîne ser kar a rejîmek demokratîk di Îrana Federal de ye ku tê de derfet ji bo tu tepeserî, binpêkirin û astengafirandin bo azadiyên demokratîk û ferq û cudahiyên zayendî, neteweyî, ayînî û zimanî nemîne.

Bi vê hêviyê ku gelên Îranê di xebata berheq a xwe a li dijî dîktatoriya Wilayeta Feqîh de her çiqas zûtir serbikevin û Îran bibe ya hemû Îraniyan bi bicîhatina hemû mafên wan.

Bi hilkevta 10'ê Xakelêwe, Roja Şehîdên Kurdistanê, em silavan dişînin ji bo canê paqij yê şehîdan û hemû zîndaniyên siyasî û malbatên xembar, tazîdar û dilnîgeran û tevî wan em li hember canê paqij yê hemû şehîdan, carek din peyama wefadarî û emegnasiyê bi rêbaza wan nû dikin ku heta ser û serkevtinê dê rêvîngên vê rêbazê û armancên pîroz ên wan şehîdan bin ku di pêxema bicîhatina wan de canê xwe pêşkêşî dayîka nîştiman kirin.

Ruha hemû şehîdan şad, rêya wan pirr rêvîng.

Bi hêviya bicîhatina hêvî û armancên wan.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**

**Deftera Siyasî**
**10'ê Xakelêweya 1388'an a Rojî**
**30'ê Adara 2009'an a Zayînî**


Meşiyan ber bi goristana Şehîdan


Rawestana li ser goristana Şehîdan


Pêşangeha wêneyên Şehîdan

# Wesyetnameya Pêşewa Qazî Mihemed

**Agirî- Heta niha kêm belge û dokument li ser awayê dadgehîkirina Pêşewa Qazî Mihemed û hevalên wî Sedr û Seyfî Qazî bi zaravê Kurmancî hatien çap û belavkirin. Xizmeta herî berbiçav di vê derbarê de nivîskar û rojnamevanê hêja Samî Ergoşî kiriye ku teksta dadgehîkirina Pêşewa Qazî Mihemed û Sedr û Seyfî Qazî ji Soranî wenrgernadiye Kurmancî û li Kurdistana Başûr hatiye çap û belavkirin. Ew karê wî hêjayî rêz û pêzanînê ye. Me bi hilkevta 62'hemîn salvegera lidarvekirina Pêşewa Qazî Mihemed û hevalên wî, bi hewce zanî ku wesyetnameya Qazî Mihemed ku beşek ji dadgehîkirina wî ye bixin ber çavê xwendevanên Agirî. Eva jêr deqa wesyetnameya Qazî Mihemed e:**

Bi navê Xwedayê mezin û dilovan.
Kur û birayên min yên hêja, birayên min yên parxwarî, gelê min yê zorlêkirî, va ez di gavên herî dawîn yên jiyana xwe de me, werin ji bo xatirê Xwedê êdî dujminatiya hev nekin û pişta hev bigirin, li hember dujminê zordest û zalim derkevin, xwe belaş mefiroşin dujminan, dujmin her ew qas we dixwaze heta karê xwe bi we pêk tîne û qed bi we re dilovanî nake, di her derfetekê de be, qed li we nabore. Dujminên gelê kurd pir in, zordest û bêdilovanî ne, sembola serketina her gel û neteweke, hevgirtin û yekbûn e, piştgiya tev gel e. Her gelê ku yekîtî û tebayiya wî nebe, ewê hertim di bin destê dujmin de bimîne, ti tiştê we gelê kurd ji gelên li ser rûyê vê erdê ne kêmtir e, belkî hûn bi mêranî û egîdî û hêjatiya xwe, ji gelên ku rizgar bûne, li pêştir in jî. Gelên ku ji destê dujminên xwe yên zordest rizgar bûne, mîna we ne, lê belê yekîtiya yên ku xwe rizgar kirine hebûye, bila hûn jî mîna tev gelên li ser rûyê erdê, êdî bindest nebin, her bi yekbûn û hesûdî bi hev nebirinê û xwe nefirotina ji dujminan re, li dijî neteweya me, hûn dikarin rizgar bibin.



Birayên min, êdî bi dujminan nehên xapandin, dujminên kurdan ji her reng û grûp û neteweke bin, her dujmin in, bêdiolavanî ne, bê wijdan in û rehmê bi we nakin, dê we bi hevdu bidin kuştin, dê we temah bikin û bi derew û xapan, dê we berengarî hev bikin. Ji dujminên gelê kurd tevan, dujminê ecem ji tevan zalimtir û mel'ûntir û Xwedênenastir û bêdilovanîtir e, destê xwe ji ti tawanan li dijî gelê kurd naparêze, bi dirêjahiya dîrokê bi gelê kurd re xerez û kîna wî ya kevnar hebûye û heye jî. Temaşa bikin, binêrin tev zilamên we yên mezin, her ji Simayîl Axayê Şikak, heta Cewher Axayê birayê wî û Hemze Axayê Mengur û çend û çendîn zilamên din, ew hemû bi xapan aram kirin û xelk ji pişt wan vekir, ca pir bi nemerdî ew kuştin. Ew tev bi sûnd û Quranê xapandin ku xudêgiravî niyaza eceman ya xêrê bi wan re heye û dê qenciyê bi wan re bikin, lê belê her xweşbawer e û bi sûnd û sozên eceman hatiye xapandin û jê bawer kiriye. Heta niha bi dirêjiya dîrokê kes nedîtiye bi tinê carekê jî ecem li sond û sozên xwe xwedî derketibin û ehdên dane kurdan pêkbînin, hemû derew û xap bûn. Ca va ye ez wek birayekî we yê biçûk, di riya Xwedê de, ji bo xatirê Xwedê ji we re dibêjim, hev

bigirin û ti carî pişta hev ber nedin, piştrast bin eger ku ecem hingiv bide we, diyar e jar xistiyê. Bi sûnd û sozên derewên eceman nexapin. Eger ku hezar carî jî dest li Qur'ana pîroz bixin û soz jî bidin we, bi tinê niyaza wan xapandina we ye, ji bo ku hîlekî li we bikin. Va ez di demên dawî yên jiyana xwe de me, ji we re dibêjim û ji bo xatirê Xwedayê mezin, ez we şîret dikim ku ya ji destê min hat, bi ser û can û tekoşîn, bi şîret û nîşandana riya rast, min ji we re xemsarî nekiriye, niha jî di vê dem û rewşê de, dîsa ji we re dibêjim ku êdî bi eceman nexapin û ji sûnd û destlêxistina wan ya li Quranê û ehd û peymanên wan bawer nekin, ji ber ku ne Xwedê dinasin û ne jî ji Xwedê û pêxember û roja qiyametê û hîsab û kîtaban bawer dikin. Li cem wan bi tinê ji ber ku hûn kurd in, bila hûn misilman jî bin, hûn sûçdar û mehkûm in, hûn ji wan re dujmin in, ser û mal û canê we ji wan re helal e û weke xeza qebûl dikin. Soza min ne ew bû ku ez biçim û we di destê van dujminên dilreş de bihêlim, min pir caran jî raborî û zilamên me yên mezin dihizirandin, zilamên me yên ku eceman bi xap û sond û derew û hîleyan ew girtine û kuştine, neçar bi derew û hîle ew xapandine, kuştine. Ew tev li bîra min bûn û ti carî jî min ji eceman bawer nekiriye, lê belê beriya ku vegerin vir, çendîn caran gotin û raspêrî bi name û bi şandina kesên navdêrên kurd û fars, bi dayîna soz û ehdên yekcar zêde û mezin ku niyaza xêrê ya dewleta ecem û Şah bi xwe jî heye û ne amade ne ku bi tinê dilopeke xwînê jî li Kurdistanê birije, niha hûn bi çavê serê xwe encama sozên wan dibînin, ger mezinên hoz û eşîrên me îxanet nekira û xwe nefirotina hukûmeta ecem, weha nedihate serê me û we, û komara me jî.

Şîret û wesyeta min ew e, bila zarokên we bixwînin, ji ber ti tiştê me ji yê gelên din ne kêmtir e, bi tinê xwendin nebe, bixwînin ji bo ku hûn ji karwanê gelan paş venemînin û her xwendin çeka kujeka dujminan e. Piştrast bin û bizanin eger ku tebayî û yekbûn û xwendina we baş be, hunê pir baş bi ser dujminê xwe de serbikevin jî.

Çê nabe bi kuştina min û bi kuştina bira û pismamên min, çavê we bitirse, heta hûn digîjin hêvî û armancên xwe, divê hûn hê jî pir kesên din yên mîna me, di vê riyê de gorî bikin.

Piştrast im piştî me pir kesên din jî her dê bi xap û durûtiyê ji holê bêne rakirin.

Piştrast im pir kesên ku dê piştî me jî bikevin xapên eceman, dê ji me zanatir û hêjatir jî bin, lê belê hêvîdar im kuştina me ji dilsozên gelê kurd re bibe pend û îbret.

Wesyeteke din ya min ji we re ew e, daxwaz bikin her çiyê we ji bona serfiraziya gel kir, alîkarê we gel be, piştrast im Xwedayê mezin dê we bi ser xîne û dê alîkariya we bike. Heye ku hûn bibêjin: Lê çima ez serneketim?! Di bersîvê de dibêjim: Bi Xwedê kim, ez serketî me, çi nîmetek, çi serketinek ji wê yekê mezintir e ku va me ez niha di riya gel û welatê xwe de, ser û mal û canê xwe didim, bawer bikin min pir ji dil dixwest eger ku ez mirim bi mirinekê bimirim ku di hizûra Xwedê û resûlê Xwedê û gel û welatê xwe de, rûsor bim, ji min re ev serketin e.

Xweştiviyên min, Kurdistan mala her kurdekî ye, her wek di malê de, endamên malê her kesê ji her karekî dizane, wî karî dispêrin wî, êdî mafê ti kesî nîne ku hesûdiyê pê bibe, Kurdistan jî her ew mal e, eger ku we zanî kesek li vê malê dikare karekî bike, dev jê berdin bila bike. Êdî çê nabe hûn keviran derxin ser riya wî û çê nabe dilê we ji wê yekê biêşe ku berpirsiyariyên mezin di destê yekî ji we de hene, eger ku karên mezin ketin ser milê yekî û ew kar bi rê ve bir, welê diyar e jê dizane û berpirsiyariyên wî yên mezin jî li hember wê erkê hene. Piştrast be birayê te yê kurd her ji dujminê dilbikîn baştir e û eger ku berpirsiyariyên mezin li ser milê min nebûna, niha ez di bin darê sêdarê de nedirawestiyam, lewra jî çê nabe hûn bi hev re

temahkar bin.

Yên ku fermanên me pêk neanîn, ne her bi tinê pêkneanîna fermanan, lê belê tam dujminatiya me dikir, ji ber ku me xwe wek xizmetkarê gelê xwe qebûl dikir, niha ew di nava mal û zarokên xwe de, di nava xewa şirîn de ne, lê belê va ye li ser navê xizmeta gel, di bin darê sêdarê de me û va ez demên dawî yên jiyana xwe bi vê wesyetnamê derbaz dikim. Ca eger ku berpirsiyariyên mezin di stoyê min de nebûna, ez jî dê niha di nava zarok û zêçiyên xwe de, di xewa şirîn de bûma. ku ez niha ji bo piştî çûyîna xwe jî, we şîret dikim, ew jî yek ji berpirsiyariyên di stoyê min de ye.

Piştrast im eger ku yekî din ji we jî berpirsiyariyên min bigirtana ser milê xwe, niha ewê li şûna min di bin darê sêdarê de bûya.

Ji bo razîbûna Xwedê û li gor berpirsiyariya di stûyê xwe de, mîna kurdekî xizmetkarê gel û di riya çakiyê de, min ev şîret li we kirin, ku hêvîdar im ji niha û pê ve pendan jê wergirin û dirust guhdariya şîretên min bikin. Bi hêviya ku Xwedayê mezin we bi ser dujminên we de, bi ser xîne:

1-Baweriya we bi Xwedê û tiştê ji cem Xwedê têt û peristina Xwedê û pêxember (Silavên Xwedê lê bin) hebe, di pêkanîna erkên olî de xurt bin.

2- Yekîtî û tebayiya di nava xwe de piparêzin, karê neqenc li hember hev mekin û temah mebin, bi taybetî jî di berpirsiyariyê û xizmetê de.

3- Xwendin û zanist û pileya zaniyariya xwe pêş ve bibin, ji bo dujmin kêmtir we bixapîne. Ji dujminan bawer mekin, bi taybetî jî dujminên ecem, ji ber ku bi çend awa û riyan ecem dujminên we ne, dujminên gel û welat û ola we ne. Dîrokê selimandiye ko berdewam li kurdan bi behane ne, bi kêmtirîn tawanê we dikujin û ji ti tawanan jî di derheq kurdan de, destê xwe nagirin.

5- Ji bo hin rojên jiyana bêqîmeta vê dinê, xwe mefiroşin dujminan, ji ber dujmin dujmin e û ne cihê pêbawerbûnê ye.

6- Îxanetê li hev mekin, ne îxaneta siyasî û ne giyanî û malî û ne jî ya namûsî, ji ber îxanetkar li cem Xwedê û mirovan jî sivik û sûçbar e, îxanet li yê îxanetkar vedigere.

7- Eger ku yekî ji we dikaribû karên xwe bê îxanet pêk bîne, pê re alîkarî bikin, ne ji ber temahî û bexîliyê li dijî wî derbikevin, yan Xwedê neke li ser wî bibin sîxurên biyaniyan.

8- Cihên ku min di wesyetnameyê de ji mizgeft û nexoşxane û dibistanan re nivîsandiye, hûn tev daxwaz bikin da ku pêk bên û mifa jê bigirin.

9- hûn ji xebat û hewl û tekoşînê ramewestin, ji bo ku mîna tev gelên din ji bin destê dujminan rizgar bibin. Malê dinê ne tiştik e, eger ku welatê we hebe, serbestiya we hebe, wî çaxî her tiştê we heye, hem mal, hem serwet, hem dewlet, hem rûmet û hem jî dê nîştimanê we jî hebe.

10- Ez bawer nakim, heqê Xwedê nebe, ti heqên din yên ti kesî li ser min hebin, lê belê eger ku kesekî welê dît ku kêm yan jî zêde tiştikî wî li cem min e, min malekî pir li pişt xwe hiştiye, bila biçe ji warisên min bixwaze û bistîne.

Heta ku hûn hev negirin, hunê sernekevin, zilm û zorê li hev mekin, ji ber ku Xwedê pir zû zaliman ji holê radike û nabûd dike.

Ev soza Xwedê ya bê kêm û zêde ye, zalim dirûxiyê û nabûd dibe, Xwedê toleya zilmê jî hil dide. Hêvîxwaz im van gotinan têxin guhê xwe û Xwedê we bi ser dujminên we de bi ser bixe, weke Sadî kerem kiriye: Muradê ma nesîhet bûd û gufîtm, hewalet ba Xuda kerdîm û reftîm. Ango, mirada me şîret bûn û me kir, me hûn rasparin Xwedê û em çûn.

**Xizmetkarê gel û welat**
**Qazî Mihemed**

Hesen Şerefî:

# "KURD DAXWAZA MAFÊN XWE DİKİN, ŞAŞÎ Û XETYAEK NEKİRİNE KU PÊWÎSTÎ Bİ VÊ YEKÊ HEBE ALİYEK KURDAN EFÛ BİKE"

me hewcehî bi wê yekê heba ku bi efûyekê her hêzek biçe nava axa xwe û di bin şopandin û ... de nebe, xwe me her xebat nedikir. Taza ji bo wê yekê jî tu garantiyek nîne, bi taybet ji Komara Îslamî ya Îranê. Lê ez hez dikim wê çendê jî bibêjim ku niha lêre, di navbera hukûmeta navendî û Herêma Kurdistanê de pirsgirêk hene. Niha gellek dever neketine ser Herêma Kurdistanê, başe heke sibê hikûmeta navendî êrîşê bike ser navçeyên azadkirî, bona girtina beşek ji wan herêmên ku naxwaze di bin desthilata Hikûmeta Herêma Kurdistanê de be, gelo Hukûmeta Herêmê mafê her cure berxwedanekê bona parastina mafên xwe hebe.

**Kekê Hesen, gotinên te rast in, lê pirsek din. Hûn bawer in ku di bin zext û givaşa Îran û Turkiyê de konferanse bihê lidarxistin?**

**Hesen Şerefî:** Min ji we re got, me tu xeberek derbarê sazkirina wê konferansê tune ye. Ewa eger ew be ku te qala wê kir. Lê ewa ne konferans e! Konferans ewa ye ku bîr û fikrên cur bi cur tê de bihên baskirin û di nava hemû fikran de, hizrek bihê hilbijartin ku meslehetê giştî yê Kurd têde be. Eger ewa nebe, tenê komkirin û ragihandina tiştekê be, ewa jê re dibêjin civîn bona îlankirina rasipardeyekê. Divê di konferansê de bîr û fikrên cuda bên rojevê, li wir de rêya herî maqûl û jêhatî ku meslehetê giştî yê Kurd li hemû parçeyên Kurdistanê pêk bîne.

**Mercên we ji bo çekdanînê çi ne?**

**Hesen Şerefî:** Merc ne, me mafek heye ku em ji Îranê dixwazin. Heke ew mafê bihête cî, ne tenê her çekdanîn, renge awayê din ên xebatê jî pêwîst nebe. Em ji bo mafekê hewlê didin, her ew mafên ku xûşk û birayên me li Kurdistana Îraqê bi salan bona bidestxistina wî mafî xebat bi awayên cur bi cur meşandine û niha jî her bi xwe dibêjin ew desthilata ku niha heye berhema xwîna Şehîdên wê xebatê ye. Başe çima ew xebat li cihekê rewa ye û li ciheke din ne berheq e!? Em dizanin ku vê hukûmetê pirsgirêkên xwe hene û divê em piştgiriyê lê bikin, me ew jî kiriye, lê me çavnihêriyê jî heye ku konferansek baseke giştî tê de bikin, meslehetê Kurd tê de berçav bigirin, me çavnihêriya wê yekê nîne ku civînek bihê lidarxistin ku tê de tevgera parçeyên din yên Kurdistanê bihê jar û lawazkirin.

**Kekê Hesen, ez dixwazim tiştek din bibêjim. Herêma Kurdistanê qise li ser vê yekê dike ku êdî Herêma Kurdistanê nikare di pêxema pêwendiyên xwe bi Îran û Turkiyê re, xwe pêbend bike, çi din nikare wan partiyan di axa xwe de cî bike ku hêza çekdar hene û li Herêma Kurdistanê çalakiyên leşkerî encam didin?**

**Hesen Şerefî:** Îca ewa renge PDKÎ negre. Ji ber ku min got, serbarê vê yekê ku me awayê xebata çekdarî red nekiriye, lê bona parastina berjewendiyên Herêma Kurdistanê me li vir tu çalakiyek çekdarî nebûye, lê di Kurdistana Îranê de jî ew awayê xebatê heta niha jî ku em çend sal dibe rûniştine, nehatiye meşandin hetanî ku eva bibe hêcetek bo Komara Îslamî a Îranê û zextê ji bo Herêma Kurdistanê bîne. Armanca me dabînbûn û bidestveanîna mafên me ye ku dawiyê bi hemû awayekî xebatê tîne.

Hesen Şerefî:

## "EM ÇAVNİHÊRIYA WÊ YEKÊ NAKIN KU Dİ CİVÎNA HEWLÊRÊ DE TEVGERA PARÇEYÊN DİN YÊN KURDİSTANÊ BİHÊ JAR Û LAWAZKİRİN"

**Şiroveya Peyvên Siyasî**

**Berhevkar:**
**Omîd Esxeran**
**omid_anbi@yahoo.com**



# Împeratorî

Împeratorî bi wan welatan tê gotin ku xwediyê wan taybetmendiyane bin:

1. Xwediyê xakeke berfireh, akinciyên zaf, desthilateke berfireh û çendîn netewe, regez û çandên cur bi cur be.
2. Welatên bi wî awayî, pitir bi sedema zalbûna netewe, hoz yan neteweyek bi ser neteweyên din çê dibe û yekîtiya wê jî bi sedema desthilata eskerî pêk tê.
3. Sîstema siyasî a wê hukûmetê hemû desthilatê dide kesekî bi navê "Împerator" û hemû desthilatên deveran di bin fermana wî de dibin.
4. Hebûna dezgeh yan teoriyeke exlaqî û siyasî ku di bin ala yek ol, yek îdeolojî yan yek destûr de bikaribe di navbera gel û neteweyên welatê xwe de hevkarî û aştiyê pêk bîne.

Împeratorî heya qasekê dişibe Federasyonê, lê wekhevî, otonomî û rizamendiya neteweyên pêkîner, tê de nahê dîtin.

Bi gotina "Arnold Toîn Bî"(A.J.To Yenbee), dîroknivîs û feylesofê Birîtaniyayî, hemû şaristaniyetek di qonaxa xwe a dîrokî de ber bi yekîtî di bin ala dewleteke cîhanî de ber bi pêşve diçe û dibin bi Împeratorî. Hinek ji Împeratoriyan hemû mercên Împeratoriyetê tunînin.

Bo mînak Împeratoriyeta Ebasî yan Romanî. Împeratoriyên Afrîqayî temenkurt bûn û di devereke biçûk de ji aliyê çend hozên biçûk ve pêk dihatin ku bi zorî dibûn bi yek. Împeratoriyeta Sorpêstên Amerîkayê jî temenkurt bûn, tenê Împeratoriyeta "Înka" karîn ku temeneke dirêj hebe û berfireh be û her wiha propagandayê bona îdeolojiya xwe bike.

Împeratoriyetên Îran, Misir, Babil, Aşûr, Hindûstan(Aşûka), Çîn û Japon mezin bûn û xala hevbeş ya olî, qanûnî û armancên zêdetir hebûn. Împeratoriya Yûnanî, Atêna û Mekdoniya, ji yên din serûbertir bûn û împeratoriya Romayê bi zorî karî çendîn sedsalan bi ser cîhanê de zal be.

Di sedsalên navîn de Împeratoriyên Ereb, Turk û Muxolan, misilman bûn û împeratoriyên Frank û Jêrmenan Kirîstiyan bûn û sedema yekgirtina wan ol bû.

Bo cara yekemîn nasnavê Împeratorî di dîrokê de bi "Agostos" hatiye bexşîn û bi dirêjiya dîrokê ji aliyê gellek desthilatdarên din jî hatiye bikaranîn.

Rêzdar Hesen Şerefî li ser mafê kêmaniyên neteweyî di hilbijartinên Îranê de ji bo Radyo "Zamaneh" dipeyive:

# "DEMOKRASÎ TEVÎ ÎDEOLOJİYA REJÎMA KOMARA ÎSLAMÎ A ÎRANÊ DİJBERÎ HEYE"

**Agirî- Qirar e ku roja 12.06.2009'an, dehemîn gerra hilbijartinên Serok Komariyê li Îranê bihê lidarxistin. Rêzdar Hesen Şerefî, Cihgirê Sekreterê Giştê yê PDKÎ di hevpeyvîneke de bi rojnamevan, Mihemedriza Eskenderî re ku çend rojan berî niha di radyoya "Zamaneh" de bi Farsî hate belavkirin, mafên kêmaniyên neteweyî di hilbijartinên rejîma Komara Îslamî de! û nemaze rewşa hilbijartinan li Rojhilatê Kurdistanê şirove kiriye. Ji ber giringbûna naveroka hevpeyvînê, me hewce zanî bi Kurmancî biweşînin.**

Li ser pirsa "rola rê û cihên mafên mirovan di hilbijartinên sî salên borî di Kurdistanê de", birêz Şerefî got: Komara Îslamî bi awayekî rûyekî peymannameyên navneteweyî û daxuyaniyên mafên mirovan wajo kiriye. Lê çiqas dikaribe di kiryar û piratîk de wan bimeşîne û li ber çav bigire, cihê pirsê ye û bê guman em dikarin bibêjin ku Komara Îslamî tu demekê ew kar nekiriye. Ji ber ku, Komara Îslamî li ser bingeha îdeolojiyeke olî û di nava vî olî de jî mesebeke diyarîkirî hatiye avakirin.

Li gora van bingehên fikrî û îdeolojîk, Komara Îslamî bi kiryar mafên demokratîk, mafê mirovan, mafên neteweyên Îranê, azadiya gotin û raderbirrînê, bawerî bi dengê xelkê û beşdariya xelkê di rêvebirina welat de binpê dike.

Bo nimûne, di hilbijartinên 2 mehên tê ku berê jî bi awayekî rûyekî binav hilbijartinên wiha hatine lidarxistin, , ji ber ku li gora Qanûna Bingehîn tenê mêr dikarin xwe ji bo Serok Komariyê berbijar bikin. Ji bilî vê yekê, di nava mêran de jî, divê kesê berendam bawerî bi mesebê fermî ê dewletê hebe û xweyî û ne xweyî jî heye.

Di encamê de, hejmarek kesên cihê baweriya rejîmê dimînin ku dikarin xwe berendam bikin.

Komara Îslamî têgihên weke demokrasî, mafên mirovan, mafê neteweyan, wekheviya jin û mêr û wd... bi diyardeyên Rojavayî dizane ku digel bingehên fikrî û îdeolojiya rejîmê dijberî heye. Dema ev têgih bi namo û nenas tên hesibandin û li dijî bingehên hizrî ên Komara Îslamî tê danîn, xuya ye ku li gora daxuyanî û bingehên mafên mirovan nahê riftarkirin. Derheq Kurdistanê, bi awayekî ron û eşkere di destpêka şoreşê de, dema ku hilbijartina Meclîsa Xîbregan hate lidarxistin, Dr. Qasimlo li parêzgeha Azerbaycana Rojava bi dengeke xurt hate hilbijartin. Lê rapor hatin ku komplo û pîlan li dijî Dr. Qasimlo di holê de ne û heke biçe Tehranê dê bilez bihê girtin, lewra Dr. Qasimlo neçû. Rastbûna vê raporê demekê derket holê ku Xomeynî di civîna hilbijartiyan de diaxive û pirsê dike: Kesên mîna Dr. Qasimlo li kuderê ne? Gelo ew li vira ye? Demkê ji wî re gotin, nehatiye û ne vira ye, got: "xwezî lêre dibû, min dê bizaniya çi ji wî bikim".

## DI HILBIJATINÊN SEROK KOMARIYA îRANÊ DE, JİN KU NÎVA NİFÛSA WELAT PÊK TÎNİN, Jİ MAFÊ XWE BERENDAMKİRİN BO sEROK kOMARİYÊ BÊPAR İN

Dr. Qasimlo bi vî awayî li beşdarîkirin di Meclîsa Xîbergan de hate bêparkirin. Cuda ji vê çendê, di wê demê de ku rejîm hêj bi tevahî cihgir nebibû û xelkê bi her awayekê be dikarîn nûnerên xwe yên rasteqîn ji bo Parlemanê bişînin, di seranserê herêmên Kurdakincî de hilbijartin birêve çû. Li bajarên Nexede û Şino'yê, berendamê PDKÎ, Kekê Mistefa Hicrî ku niha Sekreterê Giştî yê PDKÎ ye, bi dengê zêdetirî 90 ji sedê hate hilbijartin. Berbijarê vê partiyê li Mehabadê zêdetirî 80 ji sedê a dengan bidest xist, li Seqiz, Bokan û Merîwanê jî berendamên partiya me dengên herî zaf bidest xistin.

Lê Komara Îslamî hemû ew hilbijartin hilweşandin û derfet neda tu yek ji wan nûnerên ku xelkê bi dengê azad û bi dilxwazê xwe hilbijartibûn, biçin Parlamentoyê.

Ji ber ku ew berendam ji aliyê PDKÎ ve hatibûn nasîn û bîr û raman û bernameyên vê partiyê bi hizr û ramanên bertesk û paşverû ên Komara Îslamî a Îranê bi hev re dijber bû.

Piştre jî şer bi ser xelkê Kurdistana Îranê sepand û rewşa leşkerî û ewlekarî di hemû deverên Kurdakincî de zal kir û hilbijartin – ku mirov nikare jê re hilbijartin bibêje – di wê rewşa polîsî û leşkerî de lidar xist û kesên cihê hitbar û baweriya rejîmê bi xwe ku di Kurdistanê de bi qasê tiliyên destan nedibûn, ji sindoqên dengdanê anîn derê û ji bo Parlemanê şandin.

Nûçegihanê Radyo "Zamaneh", pirsek din ji Birêz Şerefî dike, "di serdemekê de ku dewleta Reformxwaz li ser desthilatê bû, gelo dîsa xelkê Kurdistanê di hilbijartinê de beşdarî kir? Gelo berendamên wisa hebûn ku ji aliyê xelkê Kurd ve hatibin hilbijartin, lê hukûmetê ew ji ortê rakiribin?" Rêzdar Hesen Şerefî di bersivê vê pirsê de dibêje: Ewa ku pêwendî bi PDKÎ ve heye, ji wê demê şûnde, ev partiye weke partiya hilweşandî û îlegal hate îlankirin û mafê nasandina berendaman ji bo tu hilbijartinekê tune bûye.

Lê pêvajoya Reformxwaziyê jî ku di nava Komara Îslamî a Îranê de pêk hatibû, heyamekê çalakî meşandin û hêj jî hin çalakiyên wan hene, wan tu berbijarek ji aliyê xwe ve di Kurdistanê de nenasandin ku pejirandiyên pirraniya xelkê bin. Heke xelkê kesanek jî nasandibin, kêrhatîbûna pirraniya wan hate betalkirin, tenê selahiyeta çend kesan pejirand ku bîr û raman û girêdayîbûna wan ji aliyê dezgehên ewlekarî û Polîs ve hatibû erêkirin û ew kes ji sindoqên dengdanê hatin derve. Ez guhdarên Radyoya we erxayîn dikim û dikarim bibêjim ku di Kurdistanê de,. Ji aliyekî din ve jî, derbarê hemû Îranê de jî, dema Wilayeta Feqîh ku desthilateke bê sînor heye û dikare hemû biryarên pejirandî ên Parlamentoyê hilweşnîne, betal bike, heta di nava wan berendaman de jî ku di derbazbûyî de kêrhatîbûna wan hatiye erêkirin, kesanek bi rastî dilsoz bin û bixwazin ji bo xelkê bixebitin, di kiryar de tu karek bi wan nehatiye kirin. Di gerra yekem a desthilata xwe de, Xatemî û Reformîstan hêceta vê yekê digirtin ku Meclîs ne di destê wan de ye, xelkê ew mihane jî ji wan birrî û pirraniya nûnerên Parlamentoyê bûn reformxwaz, serbarê vê yekê ku desthilata Xatemî gellek xurt û berfireh bû, nekarîn tu karî bikin.

Bo mînak, dema Parlemanê dixwast

# PİŞTÎ HİLBİJARTİNA MECLÎSA YEKEM KU BERBİJARÊN PDKÎ Bİ HEMÛ DENGAN VE Dİ SERNASERÊ KURDİSTANÊ DE HATİN HİLBİJARTİN, ÊDÎ TU HİLBİJARTİN BİRÊVE NEÇÛYE KU XELK BİKARE NÛNERÊN XWE YÊ RASTEQÎNE Û CİHÊ HİTBAR Û BAWERİYA XWE HİLBİJÊRİN

guhartinan di yasaya çapemenî û azadiya gotin û ra derbirrîn û wd... de pêk bîne, Xameneyî bi îşareyekê hilweşand û heta derfet neda dubare di Parlamentoyê bikeve berbas. Ji ber ku çend desthilatên xurt û mezintir ji Parlemanê hene ku rê nadin tu biryarek li dijî berjewendiyên hukûmetê û îdeolojiya hişk û paşverû a Komara Îslamî bihê derkirin

Cîgirê Sekreterê Giştî yê PDKÎ di bersiva pirsa "di madeya 21 a Danezana Cîhanî a Mafê Mirovan de, li ser mafê wek hev ê hemû welatiyan di rêvebirina kar û barên welat de ji rêya beşdarîkirin di hilbijartinan de tekez hatiye kirin, anîna şert û mercên weke bawerî hebûn bi Welayeta Feqîh an astengên olî û mesebeî di qanûna hilbijartinan de, di rewşekê de Komara Îslamî a Îranê Danezana Cîhanî a Mafê Mirovan wajo kiriye, çawa pasawhilgir e?, got: Komara Îslamî ev eslane bi awayekî rûyekî pejirandine, lê di kiryar de nameşîne.

Pirsgirêk eva ye ku organek ku desthilata rêvebirinê hebe, tune ku bikare birêvebirina van pesendkiriyane bi ser rejîmên weke Komara Îslamî a Îranê de bisepîne û daxwazê jê bike ku ew deqên ku wajo kiriye, di piratîkê de rêve bibin.

Bi vê sedemê ve, Komara Îslamî seba îdeolojiya taybet a xwe ku tevî esl û bingehên mafê mirovan, demokrasî, wekhevî û dadperweriya natebah e, Danezana Cîhanî a Mafê Mirovan rêve nabe û bawerî jî pê tune ye.

Bona vê yekê tenê rêyek heye, ew organên ku bi ser birêvebirina Danezana Cîhanî a Mafê Mirovan de çavdêriyê dikin, Komara Îslamî ku danezana han wajo kiriye, lê di kiryar de pê re pêbend nine, li wê çarçoveyê der bikin.

Ji ber ku ew hukûmet tenê karekê dike ku pê bawer e ku divê bike. Heke em nebêjin gişt, lê 90 ji sedê bi esl û rê û cihên Danezana Cîhanî a Mafê Mirovan re dijberî heye.

Mixabin di Komara Îslamî a Îranê de rewş wiha ye û heke ew wan peymannameyan wajo dike, nabe kesên din baweriyê pê bikin. Ji ber ku ew rejîme bi xwe dibêje ku sîstema min ji olek taybet çavkanî girtiye û di nava wê olê de bi mesebeke taybet dizanim, di vê çarçoveyê de jî di navebera jin û mêr de cudahiyan didanên, di nava mêrên xweyî û en xweyî de jî cudahî tên danîn.

Di bersiva pirsa "heta wî cihî ku ez dizanim Kurd dikarin di hilbijartinên Parleman, Meclîsa Xîregan û Şêwran de xwe berendam bikin – cuda ji radeya azadbûna hilbijartinê û hebûna ew fîlterên ku we bas kirin – gelo hilbijartinek di Îranê de heye ku Kurdên Îranê tê de mafê xweberbijarkirinê tune bin?, kekê Hesen Şerefî got:. Bi awayekî rûyekî tevahiya xelkê Îranê mafê vê yekê hene ku biçin ser sindoqên dengdanê, heta ji bo beşdarîkirinê de jî hay didin bona ku bi cîhanê nîşan bidin ku belê, serbarê hemû wan tiştane, em jî hinek ji aliyê kêm yê azadiyên bicîkirî di Danezana Cîhanî a Mafê Mirovan de, berçav digirin û diparêzin. Lê pirsgirêk di çawaniya birêvebirina wan de ye.

Derfetê didin xelkê ku biçin ser sindoqên dengdanê, lê kêrhatîbûn berendaman betal û red dikin. Tenê kêrhatîbûna wan kesan erê dikin ku ji fîltera Komara Îslamî a Îranê derbaz bibin û bi tevahî cihê baweriya rayedaran bibin.

Li ser pirsa "gelo li gora qanûna bingehîn a Komara Îslamî a Îranê, Kurdan mafê vê yekê heye bibin berbijarê Serkomariya Îranê?, Hesen ŞEREFÎ dibêje: Kurdên Îranê hemû Misilman in, lê du beş in, pêrewên Ola Sunnî û Ola Şîe. Li gora Yasaya Bingehîn a Komara Îslamî, berendamên Serok Komariyê divêt bawerî bi Ola Şîe ya "Esna Eşerî" (12 Îmamên Şîe) hebe, mesebê fermî yê welat jî Şîî ye.

Ew beşa Kurdan ku pêrewên Ola Sunnî ne, bi sedema Şîebûn û bêbawerî û Wilayeta Feqîh, ji ber astengên qanûnî, nikarin xwe berbijar bikin. Seba vê yekê ku Kurdên Şîe, Kurd in, di navbera wan û Şîiyên din de jî ferq û cudahiyan didanên.

Gelo astenga qanûnî a ji bo berendambûna Kurdên Sunî di hilbijartinên Serok Komariya Îranê de, tevî madeya 21 a Danezana Cîhanî a Mafê Mirovan dijberî heye an na?, rêzdar Şerefî got: bi awayekî xursitî dijberî heye. Ji ber ku di vê madeyê de nehatiye ku divê berendam bawerî bi ol û mesebek diyarîkirî an kesekî diyarîkirî, wek Weliyê Feqîh (rêberê Olî yê hukûmetê) hebe.

Ji vî mafî (mafê hilbijêran û hilbijartinê) weke mafê mirovan hatiye baskirin û di çarçoveyeke sînordar nehatiye kirin ku her welatek têgihîştina taybet a xwe jê hebe.

Di dawiya hevpeyvînê de Cîgirê Sekreterê Giştî yê PDKÎ balê dikişîne ser karnameya hilbijartinan di 30 sal desthilatdariya Komara Îslamî a Îranê û dibêje: di heyamê jiyana siyasî a Komara Îslamî a Îranê de, nehatiye dîtin ku hilbijartin bi liberçavgirtina esl û rê û cihên Danezana Cîhanî a Mafê Mirovan hatibe meşandin.

Ji ber ku vê rejîme bi tu awayekê bawerî bi wan tune ye, ewên ku berbijar dibin, zêdetir ji vê yekê ku nûnerên xelkê bibin, nûnerên rejîmê ne. Ez karnameya Komara Îslamî di vê derbar de reş dibînim, her wekî Îran bêtirî bîst caran ji aliyê organên navneteweyî ên mafên mirovan ve bi binpêkerê mafên mirovan hatiye mehkûm û şermezarkirin.

Bêguman rejîmek ku ew qase ji ber binpêkirina mafê mirovan tê mehkûmkirin, xwezayî ye ku ev mehkûmkirinane azadî di hilbijartinan de jî lixwe digire.

Azadî bi wateyê ku di welatên azad û demokratîk de heye, di Îranê de tune ye. Tenê ji bo xapandina raya giştî van sindoqane tînin holê û propagandayê pê dikin ku bibêjin me jî hilbijartin heye. Lê di Komara Îslamî a Îranê de, hilbijartin ji naveroka eslî û demokraîk a xwe dûr bûye.

# KURDAN Dİ ÎRANÊ DE MAFÊ DENGDANÊ HEYE, LÊ Bİ KESEKÊ KU SÎSTEM WÎ/WÊ DİNASÎNE, NE Bİ KESEKÊ KU Bİ XWE DİXWAZİN HİLBİJÊRİN

# ZIMAN Û ZANÎN

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com



Zimanê ku di warê dane, semptom (nîşan) rawêj, feraziye(hîpotez) lêgerîn, lêkolîn, dahûrandin, dad û darizandinê tê bikaranîn, wekî zimanê zanistê tê binavkirin.

Guherîn û veguherînên ku di warê zanîn û zanyariyê de pêk tên, her gav hewceyî modîfîkasyon (veguherina giştî) ye. Her şax û qadên zanînê, hewcetî bi zimanekî zanistî û xweser; her zimanê zanistî û xweser jî, pêdivî bi têgih û bêjeyên nûjen heye. Belê di pêwendiya navbera ziman û zanînê de jî hewcetî bi têgihên nû heye. Zanîna ku peyam û gihanekên zanistî vedugêhêze civakê an jî nifşê nû, gellek merc û taybetmendiyên heyberî(tişteyî) di xwe de dihewîne. Her wekî din, digel ku kan û jêdera zimanê zanistê, zimanê civakê yê devkî be û têgihên vî zimanî gellek wateyên giran di xwe de dihewîne jî, awa û şêwaza vî zimanî cihê ye û sînorê têgihên vî zimanî -li gorî zimanê rojane- hinekî teng û tixûbdar e. Gava ku bi awayekî rastîn (siruştî) were nirxandin, tu ziman jî bi reseniya xwe nikare bibe zimanê zanistê. Ji bo ku zimanek bibe zimanê zanistê, pêşî hewcetî bi hin şert û mercên bingehîn heye. Şertê bingehîn ê sereke ew e ku, bi wî zimanî lêkolîn, hilberîn û dahûrandinên zanistî werin kirin. Zimanê zanistê girêdayî hin geşedaniyên çand-civakî û komalî- aborî di çarçoveya domana perwerdebûna civakê de pêk tê û pêş ve diçe. Ev rewş bi hilberîna zanist û zanînê re, gellek têgih û rêmanên zimanê zanînê jî bi xwe re tîne. Belê di vê navberê de, divê rola gerdûnîbûna zanînê û hevhîkariya navbera çanda civakên dinê û peyvên deynkirî- ku ji zimanekî derbasî zimanê din dibin-derbasî zimên dibin, neyên jibîrkirin. Ji ber ku gerdûnîbûna zanînê her tim xwe di têgihan de dide der, civakên ku bi têgihên zanistî têkildar dibin, tenê dikarin têgihên zanistî hilberînin û bi kar bînin. Zimanekî ku di pergala zimanê neteweyî re pêk tê, an di sînorekî teng de tê esirandin, zêde ne pêkan e ku tixûbê neteweyî derbas bike û bigihîje merhaleya zimanê zanistê yê navneteweyî. Wekî mînak; îro bi giranî zimanê felsefeyê Almanî, zimanê teknolojiyê Îngilîzî, zimanê sosyolojiyê jî Fransî ye. Belê tenê ne ji hêlekê ve, zimanê ku ji hemû hêlan ve di suxreya zanist û zanînê de were bikaranîn, her wiha hem dibe zimanê serdest û gelemperî û hem jî dibe zimanê gerdûnî yê demê. Îro zimanê Îngilîzî, ber bi rewşeke wisa ve diçe. Zimanên dinê hemû di bin bandor û hîkariya vî zimanî de mane/dimînin. Ji ber ku dahêner, afirîner, zanyar, ramanwer û lêkolînerên dinê hemû zanîn û perwerdehiya xwe bi vî zimanê pêk tînin, ev ziman jî (Îngilîzî) wekî zimanê demê yê gerdûnî tê qebûlkirin. Belê dîsa jî hilberandina têgihên zanistî yên ku di hizra mirov de pêk tên, hemû saya pergala zimanê mirov ê dayikê pêkan dibe. Ligel ku guherîn û veguherînên civakî bandorê li ser pergala zimên dihêlin jî, dîsa di her warî de hewcetî bi xebat û lêkolînên akademîk û sosyo-lîngûîstîk heye. Heke zimanekî civakê yê ku hewm û armatûrên zanistî yên teknolojiyê hilberîne tune be, ew civak nikare alav û amrazên teknolojiyê bi kar bîne û nabe xwediyê zimanê zanistê. Îcar ev yek wekî pirsgirêkek gerdûnî, li ber pêşeveçûna geşedaniyên zanistî jî dibe manî û asteng. Civakên serwer, dewlemend û pêşketî vê pirsgirêkê li gorî berjewendiyên xwe, hildidin dest. Û zimanê xwe li ser civakên bindest û paşmayî didin ferzkirin. Ev yek jî, ji gerdûnîbûnê wêdetir hêz û quwetê dide zimanê dasgirker û mêtingerên dinê û xizmetê jî bişavkeriyê rê dike. Îcar, heta ku têgihên teknolojiyê û bêjeyên zimanê zanistî di yekdestiya hêz û kesên bişavker û dagirker de be, tu civak nikare zimanê xwe ragihîne radeya zimanê zanînê û merhaleya gerdûnîbûnê. Çimkî hêz û civakên ku dibin hilberînerên teknolojiyê, her wiha dibin afirînerî têgihên zimanê zanistê bi xwe jî. Nemaze civakên ku têgihên zimanê zanistê belav dikin û bi kar tînin, bi giştî an civakên serdest û mêtinger an jî dûgel û xuhermendên desthilatdar in. Mirov an jî civakên xizan û bindest zêde nikarin alav û marazên teknolojiyê bi kar bînin. Têgih û bêjeyên nû qet ne bi zimanê wan ê dayîkê ye. Ji bo wê zêde di wateya van alav û têgihên nû û nûjen de nagihîjin. Carekê, zanîn û sehekiyên ku van civakan, bi pêhesî û bibîrxistinên zimanê xwe yê dayîkê re bi dest xistine tu car di têgih û zimanê zanistê yê nû û nûjen de nayên dîtin. Di vê maweyê de li şûna ku zimanê mirov ê zikmakî dewlementir û xurtir bibe, qelstir û lewaztir dibe û ber bi bişavtin û mehandinê ve diçe. Ji bo wê, peyv û têgihên ku bi zimanê mirov ê dayîkê re di raman û hişmediya mirov de bi cih bûne jî hin bi hin tên xesandin û jibîrkirin. Zimanê hizr û ramîna zanistî yê ku biafirîn, hilberîn û perwerdehiya mirov bi dest dikeve, her gav bi saya zimanê zikmakî pêk tê. Bi vegotineke din, çareseriyên rojane û demdemî, dibin sedemên pirsgirêkên nû yên dûdirêj, domdar û mayînde. Hemin ku di navbera ziman û zanînê de pêwendiyeke çarenîn û jênager heye, divê her civak zimanê xwe li gorî zanînê û zanînê jî li gorî zimanê xwe bi kar bîne û pêş ve bibe. Hekena, tu ziman nikare xwe li hemberî zimanê desthilatdar ê ku îro xwe bi her awayî li ser zimanê gel û civakên paşmayî daye/dide ferzkirin, ragire.

Kaniya Helbestan

## Wêneyên Dil

Husên M. Hebeş
habasch70@hotmail.com



Dilê parseçî,
Pir xewnan dibîne.

***
Dilê ku di bin kurtik de dîn nebe,
Dilekî qelp e.

***
Dilê dudilî,
Dilekî kekec e.

***
Dilê ne serxweş,
Dilekî pûç e.

***
Dilê neçel,
Dikarê hemû deriyan veke.

***
Dilê ku bêhna evînê jê nebare,
Dilekî serjêkirî ye.

***
Dilê revok,
Hêjayî vemirandinê ye.

***
Dilê ne îsot,
Nikarê hingiv bide.

***
Dilekî vala,
Goristaneke tarî ye.

***
Dilê kulek,
Nikare li hespê evînê siwar be.

***
Dilê rewan,
Ew dilê ku hestiyên parsûyan
dişikîne!

# Berbangê, Keçikek Dimire

**Zana- Li Makuyê**

Keçikê serê xwe ji ser balgî rakir û di nava ciyê xwe de rûnişt, xew ji çavên wê dibarî lê bê hedûr bû.
Te digo qey dilgranî tişitekê ye Dora xwe nihêrî çira damirandî bû, dayîka wê nava ciyê xwe dabû û gunê wê diya wê hat. Belengazê ew çend roj bû demek dijwar derbas dikir.
Mêrê wê piştî 5 zaroka dixwaze li ser bizewce.

Ew çend roj bû mal bibû qada şer, dilê bavê wê ketiye keçikekê ku hev temenê wê ye Dibêjin bavê wê bi mala bavê keçikê ra erê kirin jî kiriye, tiştek di hundur sîngê wê de dilê wê digivşe û bûyerên wan çend rojan mîna rêze fîlmekê li ber çavên wê re derbas dibin.

Bavê wê hewl dide xwe mafdar nîşan bide û jina xwe bîne rê da li dij zewaca wî dernekeve, lê jinik ku paşeroja xwe reş dibîne, dijî zewaca wî derdikeve û hewl dide bi girî û xeydê biryara wî betal bike lê mêrik qet paşekişiyê nake û hewl dide bi hincetên îslamî jinikê serwext bike û dibêje:

Ma te nebihîst mela digo mêrek dikare heta 4 jina bîne eger heyî ya wî hebe û bikare wan xwedî bike. keçê ev ne gotina min e, ew ya pêxemberê xwedê ye.

Heyî ya wî hebû, mela, zaon û hertişt li gor dilê wî bû, tiştek tunebû ku mafê jinê biparêze.

Jinik mîna sêla sor bû, dîn dibû, digo ma nayê bîra te dema te ez xastim şîva şevê te hesret bû, ma tu nizanî tu pê diravê bavê min derketî vê rojê, ma nayê bîra te me çiqas belengazî kişand teze em derketin ronahîyê tu dîsa roja me reş dikî Ma min te ra çi nekir ez



mala teda birçî mam û dengê min derneket, lê niha ku teze em kêmekî roja xweş dibînin tu çima min qayîl nabî, bila hema gunê te 5 zarokên me were.

lê mêrik êdî birya xwe dabû û bi tûrebûn û lêdanê dixast jinik biryara wî erê bike lê digo erê jî nekî qet tiştek nabe ezê karê xwe bikim.

Ew çend roj bû û wê şevê jî heta şev derengî şerê wan berdewam kiribû lê wê sibê bavê wê ê jina xwe ya nû polek bikira.

keçikê xwest serê xwe daynê ser balgî, lê balgî sere wê ji ber giryan û hêsirên wê ter û ser bibû.

Derket hewşê berbang bû, qasekî şûnda wê roj derketa, malê nihêrî ku êdî ew mala berê ya germ nebû û zanî ku ew mala êdî qet nabe ya berê ji dil da go xema çi bikim ezê rojekê ji vê male herim ezê ji vê rewşê rizgar bim lê te digo qey çarenûsa diya wê ew ji paşerojê tirsandiye ji xwe re go eger mi siyar bikin ez herim mala desgirtiyê xwe jî dibe ev roja serê min ji were, erê azad(desgirtiyê wê)min hez dike, lê ma bavê min ji diya min hez nedikir, eger azad ser mi bizewce wê kê mi biparêze, na na ez wî hez dikim ez nikarim wî bi kesekî ra parvekim, ma ew xarine yan tiştek e ku ez wî parvekim.

Fera ku Benzîn têda bû, ser serê xwe da rû kiribû. li ber pencerê sekinî, roj hêdî hêdî dixwest derketa, li dayîka xwe nihêrî çawa hêsay jiyana ku ewqas belengazî jêre dîtîye, jidestdabû. Êdî biryara xwe dabû, firingî (şiqarte)vêxisist û…..

Nojdaran digo ji sedî nod leşê wê şewitî ye, dayîka wê li xwe dixisit. Ber serê wê tijî meriv bûn, azad digirya êdî baweriya wê bi ti mêrekî nemabû, li azad hez dikir, li dilê xwe da go ma dayîka min li bavê min hez nedikir

Gelek kes hatibûn û her yekê tiştek digot…

Digo wusa şewtîbû ku Gustîla nîşanî yê ji tilîyê derneket

Daxistin tirbê, mela Quran dixwand. Xeberdana nava hatîyan berdewam dikir, yekî digo:

Mela gotiye kî xwe bikuje kujer e dê xwedê wî/ê ceza bike, mela digo xwe kuştin di îslamê da heram e..

Azad digiriya, kesî ew zeft nedikir, xaltiya wî destê xwe avêt stûyê wî û bir -negirî xaltiya te qurbana te be, a pêda keçikên rindik tu dil bike ezê xezala keçika xwe qurbana te bikim.

Xezal li cem wan bû, şerm û lêvkenekê ew kêfxweş dikir, hate rûyê wê şermana sor bû xeyalên xweş dor lê girtin, lê dengê girîn û zarînan ew şiyar kir …..

# Zistan Diçe!

**Rojan ji welatê**

Zıstan ber bi malavaiyê diçe, barê xwe hil dide û rengê mirin û nemanê dişo û gel xwe dibe, ji ber wê hindê ku çawên wê ber geş bûna gule newrozan nawebin û heza mana wê ji ber bêhna etra gulên han nemaye û nikare bibîne ka çawa erd û esman, deşt u dol, çiya û zozan xwe bi gul û giya dixemilînin û dîmenên reng bi reng bo pêşwaziya roja azadiyê û sembola kurdayetiyê dıafırînin.

Ew baş dizane ku taba berxwedanê nemaye û nikare xwe ber agirê gur û geşe newrozê rabigre.

Pexîlî û hisadet nahêle ew coş u xuroşa gel bo hatina sersalê û pîrozkirina serhildana Kawe yê Hesingir û hewrên wî temaşe bike.

Zistan ji ber rewşa xwe nikare bizane ka çawa gelê kurd bı dilekî evîndar û pir ji hesret û her wisa hîwiyeke herdemî di newrozê û hatina buharê de destên hev du digrin û çawê hev maç dikin, paşan jî li çiyayê serbilind û serfiraz yên kurdistanê agirê serhildanê hil dikin .

Di ronahiya geş û germa agirê sersalê de, zistan karê malawaiyê dike, çikû ew nikare mêze bike ku.

li bakûr û Başûr, Rojhelat û Rojava di dema newrozê hertim yekreng u yekdeng wate heye; Ew reng, rengê agir (rengê şoriş û xebat) û ew deng, dengê Kawyê Hesingir(dengê azadiyê) e.

# KURDÊN KOÇBER



**Lokman Polat**

Dewleta dagîrker a tirk li bakurê Kurdistanê li hemberê kurdan şerekî qirêj pêk anî. Hêzên dewletê bîstûpênc hezar kurd kuşt û pênc hezar gundên kurdan şewitand, xirab kir, wêran kir. Dewletê bi çova zorê bi milyonan kurd ji ser axa wan rakir û kire koçber.

Kurdên ku bûn koçber û koçê bajarên mezin yên rojvayê Anadoliyê kirin, di wan bajarên mezin yên metropol de perîşan bûne. Gundiyên kurd ku koçê van bajaran kirin xwedî ziman û çandeke cuda bûn. Wan li bajaran kar nedît ku bixebitin. Bêkarî, feqîrî, belengazî wan xiste haleke xirab. Lewre jî hinek gundîyên kurd û zarokên wan ji neçariyê krîmînalîze bûn. Kurdên koçber ji mecbûrî têkilên karê krîmînal bûne.

Di gund de halê wan xweş bû, rewşa wan a aborî baş bû. Hatina wan hebû. Erdên xwe diajotin, rez û bostanên wan hebû, dewarên wan hebû. Ard ji erd, rûn, şîr, dew û mast ji dewaran, fêkî ji bexçeyan, zebze ji bostanan diçiniyan. Lê li bajaran mecbûrin ku wan hemû tiştan ji çarşîyê, ji dikanan bikirin. Dema kar tunebe, hatina aborî nebaş be, mirov mihtacê naneke somûnê dibe.

Niha li hepisxaneyên bajarên mezin de yên hepiskirî bi piranî kurd in. Kurdên ku ji ber neçariyê mecbûr mane dizî kirine, cih û kesan şelihandine, karên qaçaxî kirine û esrar û eroîn firotine û hatine girtin, li hepisxaneyan dirizin. Ew kesên hepiskirî ji keyfa dilê xwe neketine van riyên xirab. Şert û şût û jiyana kambax ew mecbûr kirine û lewre jî ketine vî halî.

Hinek keç û jinên kurdên koçber ku ji alî hinek tirkên zikreş, xêrnexwaz û pêzeweng ve hatine xapandin û van tirkên dilreş wan kirine koleyên seksê, di rewşeke xirab de ne. Hinek ciwanên tirk ku peyayên –zilamên- pêzewengên jinfiroşanin, bi keçên kurdan re têkilî datînin û wan bi weeda zewacê dixapînin û dibine laşê wan difoşin. Hinek keç û jin jî ji ber rewşa aborî, ji neçariyê dikevin vê riya xirab û laşê xwe difroşin. Netenê li bajarên metropolên rojavayê Anadoliyê, herweha li bajarên kurdan jî fuhuş, laşfirotin, qebraxî, pêzewengî pir bûye. Du bajarên ku dil û ruhê Kurdistanê ne, yanî li bajarê Amedê û Wanê jî hejmara jinên koleyên seksê zêde bûye û piraniya wan ji jinên koçber ku ji gundan hatine pêk tê. Rojnameya *"Azadiya Welat"* jî çend car di nûçeyên xwe de bal kişand ser vê rewşê û fuhuşa li bajarên Kurdistanê şermezar kir. Li bajarên Kurdistanê hinek polîsên tirk, uzman çawîş û karmendên dewletê vî karê fuhuşê organize dikin û hem jê pere qezenç dikin û hem jî keç û jinên kurd dixine riya xirab.

Li bajarên Ankara, Îstanbul û Îzmîrê fedaîyên bar û pavyonan bi piranî kurd in. Patronên bar û pavyonan ji bo mêrxasî û netirsiya kurdan wan weke fedaî bikar tînin. Koçberên ku di bajaran de ji ber neçariyê ketine riyên xirab û karên xirab dikin, heger mecal hebe û gundiyên koçber vegerin gundên xwe, dê ew jî dev ji van karên xirab berdin û vegerin gundên xwe û li ser axa xwe bijîn.

Min di pirtûka xwe ya novelan de, ku navî ***"Girîna Kurdî"*** ye, bi tevahî rewşa kurdên koçber û serpêhatiyên wan bi şêweyeke edebî anî zimên. Panzdeh kurteçîrokên ku di pirtûkê de ne, rewşa kurdên koçber tine ber çavan. Gelek xwendevan ji min re mail dişînin, ez pîroz dikin û dibêjin "te bal kişandiye ser mijareke gelek girîng. Xwezî kanalên televizyonên kurd jî dest biavêjin vê rewşê." Mesele netenê ziman e. Vekirina TRT- 6 û xeyrêresmî – nefermî- serbestkirina ziman ji pirs û pirsgirêkên netewî, demokratîk û sosyal civakî re nabe çareserî.

Rewşa koçberên kurd yên metropolan rewşeke cidî ye. Divê masmediya kurd li ser vê mijarê bisekine. Divê televizyonên kurdan biçin li ser rewşa wan program çêkin. Rewşa koçberan rewşeke sosyal civakî ye û divê bi pirsgirêka doza kurd ve bêçareserkirin. Ji bo gundîyên kurd yên koçber vegerin gundên xwe, li gundên wan mal – xanî- yên wan bêne çêkirin, derûdora gundên wan ji mayînan bêne paqijkirin. Divê hewldan pêk bê û jê re çareserî bê dîtin.

# MÊVANIM



**Dildar Îsmaîl**

Ez mêvanê viyana te
Dilovanê ew bejna te
Hisreta min dîtina te
Mêvanim...........
Ez mêvanê sînor û kêl
Bextê min reşe wekî pêl
Yara min dûre bûye rêl
Mêvanim......
Mêvanê her xewnên tarî
Çar gula dikim diyarî
Hêstirê çavan ne barî
Mêvanim.....
Ez mêvanê agirkî reş
Bilûrvanê awazek xweş
Sikvanê çiyayê laleş
Mêvanim.......
Ez mêvanê rengê toncîn
Dildarê evîna zêrîn
Guhdarê halbesta xemgîn
Mêvanim......
Mêvanê sorbûna rojê
Ji dil her keser dirijê
Evîna te dil dibrêjê
Mêvanim.....
Mêhvanê tavên buharê
Dûrbûna min ji te yarê
Qedere kes pê nikarê
Mêvanim......
Ezim mêvanê şox û şeng
Tu carî ji te nayê deng
Xwîna dil dibarê yek reng
Mêvanim......
Mêvanê şevên zivistanê
Xweşbûna deng û dîlanê
Ji evînê çêkim dîwanê
Mêvanim.........
Mêvanê Dicla û Ferat
Çem û çiya kanî û lat
Li çar gula dikim xelat

Mêvanim...................

agiri

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

E - Mail:
agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com



## Du Xebatkarên Dêrîn Ên PDKÎ Û Komara Kurdistanê Xatira Xwe Ji Jiyanê Xwestin



Mihemed Silêmanpûr



Şêx Mihemed Bilbasî

Di çend rojên borî da koça dawî ya du Pêşmerge û xebatkarên dêrîn yên PDKÎ û Komara Kurdistanê bû sedema kul û keserek giran li ser dilê xelkê Kurdistanê û nemaze endamên PDKÎ û malbatên wan.

Roja Sêşem, 24'ê Nîsana 2009'an, Pêşmergeyê dêrîn yê PDKÎ **Şêx Mihemed Bilbasî** bavê şehîdekî partiyê bi sedema nexweşiyê çû ber dilovaniya xwe. Her wiha roja 1'ê Nîsana 2009'an, têkoşerê mezin yê PDKÎ û Pêşmergê Komara Kurdistanê Mihemed Silêmanpûr bavê 4 şehîdên partiyê li bajarê Silêmaniyê koça dawiyê kir û wan du kesayetiyên welatparêz xatira xwe ji gel û malbata xwe xwestin.

Desteya Weşana Agirî bi sedema wexera dawî a van du xebatkarên dêrîn sersaxiyê dibêje malbata û kes û karên wan. Ruha wan şad be.

### Efûya Navneteweyî:

## "Di Sala 2008'an De, Îran Duyemîn Welat Bûye Ku Herî Zêde Xelk Îdam Kiriye"

Rêxistina Efûya Navneteweyî derbarê rewşa mafê mirovan û hejmara daliqandina di welatên cîhanê de raporek nû weşand û diyar kir ku di sala 2008'an de, piştî welatê cîhanê, Îran duyemîn welatê cîhanê bûye ku herî zêde biryara Rêxistina îdamkirinê li ser welatiyan meşan diye.



han diyar kir ku di sala borî de, 2400 kes li cîhanê hatine daliqandin ku hejmara herî zêde li Îranê û Çînê bûye.

Efûya Navnetewî bi hûrî balê dikişîne ser rewşa xirab a mafê mirovan di Îranê de, nemaze birêvebirina biryarên berdewam ên daliqandin.

## Xelata Rojnamevaniya Birîtanya Ji Bo Mihemedsidîq Kebûdvend



Saziya Xelatên Çapemeniya Birîtanya , **Mihemedsidîq Kebûdvend**, rojnamevanê kurd û serokê Rêxistina Mafê Mirovan li Kurdistanê ku nêzîk 2 salan e di girtîgeha Komara Îslamî a Îranê de ye, wek wergirê wê xelatê diyarî kir, xelata han roja sêşem borî, 31'ê Adara 2009'an li Londonê bi wî hate dan.

Kebûdvend bi şandina nameyekê ji girtîgehê, sipasiya wan kir û bal kişande ser rewşa xirab a mafê mirovan di Îranê de. M. Kebûdvend bi 11 salan cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin.

Heyata Dawerên Xelata Navnetewî a Çapemeniya Birtînayayê ji 100 rojnamevanên serbixwe pêk tê.

### Wezîrê Parastina Amerîka:

## "Li Hember Îranê Dorpêçên Aborî Bêtirî Dîplomasiyê Serkevtî Dibe"

Wezîrê Parastina Amerîka Rabert Gîts, dibêje ku dorpêçên aborî bêtirî dîplomasiyê dikare ji bo siyaseta Amerîkayê li hember rejîma Tehranê serkevtin û pêşveçûnê bi dest bixe.

Wî di hevpeyvîneke de tevî kanala "Foxnews"ê de got: bi raya min li hember her du welatên Îran û Kureya Bakûr, baykutên aborî bi bandortir in heta dîplomasî. Bi dorpêçên berfireh ên aborî, Îran dê neçar bimîne siyasetên xwe biguherîne.

Ev gotinên Wezîrê Parastina DYA'ê digel stratejiya nû a Obama dijberî heye ku dixwaze siyaseta gotûbêj û dîplomasiya rasterast li hember Îranê bigre pêşberî xwe.

## Jineke Kurd Bû Ravêjkara Cîgirê Serok Komarê Amerîka



Bayden, Cîgirê Serok Komarê Amerîkayê, jinek Kurd weke ravêjkara herî mezin a xwe ji bo kar û barê Rojhilata Navîn destnîşan kir. Hêro Ebdulqadir niha şûnde dê di Koşka Sipî de bixebite. Ew sala 1973'an li Hewlêrê ji dayîk bûye û mastera wê a pêwendiyên navneteweyî heye. Ji sala 1999'an ve li Wezareta Karê Derve ya DYA'yê dixebitî.